5



قائیمقامی خانەقین:

## لێرە دەمێکە تەعریب کۆتایی هاتووە

10

لەبەرئەوەی ژمارەیان کەمە

## نێرەمووکەکانی کوردستان یاسایان بۆ دەرناچێ

ÇAPA EWRÛPA

# Rûdaw

Rojnameya Kurdên Diyaspora



Wezîrê Derve yê Swêdê, Karl Bildt, ji Rûdawê re axivî

## Em dixwazin têkiliyên xwe ligel Kurdistanê bihêztir bikin

Rûpel ▶7

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 89 | 31 Adar / März 2011

# 18 salan winda ye

## Nemir wê demê 11 salî bû

◆ Malbata Nemir hîn jî hêviyên xwe qut nekirine.

11 ⟫



Wêne: Malbata Önen

**Nemirê ku wê niha 29 salî bûye, ji 16'e Gulana 1993'an ve winda ye. Nemir wê demê 11 salî bû û xatir ji bavê xwe xwest û berê xwe da cem hevalê xwe. Û êdî venegeriya. "Hevalê" Nemir mêrekî alman yê wê demê derdora 40 salî bû û li gor agahiyên ku malbata Nemir dan Rûdawê, wî gelek caran pere û tiştên din jî didan Nemir. Malbata Nemir ku ji Bakurê Kurdistanê ye, hêjî bi hêvî ye ku Nemir sax be û rojekê vegerê. Malbat ji "hevalê" Nemir yê alman, ku demek dirêj di zindanê de jî mabû, bi şik e û bawer dike ku destê wî kesî û keşeyeke jin di windabûna Nemir de heye. Van rojan televizyona almanî ZDF jî dosyayek li ser windabûna Nemir weşand.**

## Ew di gelek gavan de yekem bûyê

Siyasetmedarê Kurd Cewher Namiq Salim roja 22'ê Adarê li Swêdê ji ber nexweşiya pençeşêra kezebê jiyana xwe ji dest da. Nûnerê berê yê Hikûmeta Kurdistanê Teha Berwarî li nexweşxaneyê heta roja dawî ligel wî bû. Berwarî ji Rûdawê re got ku moralê Cewher Namiq hertim baş bû û pirsa xwepêşandanên li Silêmaniyê û bûyerên Lîbya dikir. Berwarî îdiayên wek jehrîkirina Cewher Namiq jî red dike û dibêje, "Li nexweşxaneyên Swêdê derbarê hemû nexweşan de hertim raporên rojane tên girtin û ligel ku 12 pizîşk pê re mijûl bûn encameke wiha derneket." Nas û dostên Cewher Namiq jî wî wek 'kesayetek navend ku li dora xwe her kes dicivand' binav dikin.

Rûpel ▶3

Suriye

## Pêla serhildanê giha Sûriyê

Di 15'ê Adara 2011'an de bi sedemê girtin û îşkencekirina zarokên xwendekar, li bajarê Deraa ku dikeve başûrê Sûriyê, serhildanê destpê kir û hêzên hikûmetê bi tûndî êrîş birin ser xwepêşanderan. 37 kes jiyana xwe ji dest dan û hêzên hikûmetê dora Deraa pêçandin ku ji derve alîkarî neyê. Li herêma Kurdan bêdengî didome lê rayedarên partiyên Kurd ragihandin ku wê bêdengî zêde nedome. Hêzên opozîsyonê jî roja 25'ê Adarê wek "Îna rûmetê" binavkirin û ji bo xwepêşandanên berfirehtir ên li tevahiya Sûriyê bang li gel kirin. Di vê navberê de Netewên Yekbûyî, Yekîtiya Ewrûpa û Amerîka jî hikûmeta Sûriyê şermezar kirin.

Rûpel ▶6

Serokwezîrê Tirkiyê Erdogan serdana Hewlêrê kir û soz da:

## Em ê dawî li siyaseta înkarkirina Kurdan bînin

**Hewlêr (Rûdaw) -** Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayyip Erdogan roja 29'ê Adarê bi serdanek fermî gihişt paytexta Başûrê Kurdistan Hewlêrê û di merasima vekirina Firokxaneya Navdewletî ya Hewlêrê de gotarek pêşkêş kir û got ku ewê ''dawî li wê siyaseta kevin a Tirkiyê bînin ku gelê Kurd înkar dikir.''

Erdogan ji aliyê Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û gelek serkirdên din yên Başûr hat pêşwazîkirin. Di gotara xwe de Mesûd Barzanî bal kişand ser serdana Erdogan "ya dîrokî" bo Başûrê Kurdistanê: ''Em vê serdana we ya bo Îraqê û piştre bo Hewlêrê wek bûyereke dîrokî dibînin, ew yek ji biryarên we yên biwêrane ye.'' Barzanî wiha pêde çû: ''Ji dema ku hûn bi îradeya miletê xwe li Tirkiyê hatine ser desthilatê em şahidê guherankariyên pir mezin in û we biryarên gelekî biwêrane dane.'' Serokwezîr Erdogan jî di gotara xwe de behsa serdema desthilatdariya AKP kir û wiha got: ''Di van 8 salên dawî de bi rêya ku me di nav hevwelatiyên Tirkiyê de birayetî damezrand, me karî di warê siyasî û aborî de jî pêşkevin. Li rojhilat û başûrê rojhilatê Tirkiyê me mezintirîn hilberîna dîrokî emcam da. Niha, ku piraniya hevwelatiyên Kurd li wan navçeyan dijîn, em ê dawî li wê siyaseta kevin a Tirkiyê bînin ku gelê Kurd înkar dikir.''

Li gor nerîna çavdêrên siyasî, sedema serdana Erdogan a Başûrê Kurdistanê ji xurtkirina pêwendiyên aborî bêtir, hilbijartinên Parlamentoyê yên peş li Tirkiyê bû. Çavdêr dibejin ku Erdogan dixwaze bi vê serdana xwe peyamekê bide Kurdên Bakurê Kurdistanê û wan bikşîne aliyê xwe.







Great Britain



www.rudaw.net
info@rudaw.eu

## Wêneyê Hefteyê

Endam û rayedarên BDP'ê hefta borî li Amedê dest bi çalakiyên 'Neguhdayîna Sivîl' kirin. Serokê Şaredariya Mezin a Amedê Osman Baydemir jî bi armanca piştgiriyê çû cem girseya gel a li ser Kolana Koşuyolu. Baydemir ji nişka ve li wir çû ser panzera polîsan û polîsan jê xwestin ku ji panzerê bê xwarê. Lê Baydemir daneket û got, "Ev panzer bi baca me hatiye standin, a me ye û ez danakevim. "


Wêne: DIHA / Rûdaw

# "Eger tu gelê min bombe bikî, ez ê jî şeqamê li te bixim"


Sebahat Tuncel şeqamek li Cîhgirê Komîser, Murat Çetiner xist

Şeqama Parlamentera BDP'ê ya Stenbolê Sebahat Tuncel mohra xwe li şahiya Newrozê ya li Silopiyê xist. Tuncel ji Rûdawê re ragihand ku polîsan bi pilan êrîş birine ser wan û şahiya Newrozê kirine wek qada şer. Tuncel bal kişand ser bûyera sala borî ya birindariya Sevahir Bayindirê li got: "Birîndarkirina parlamentereke jin nabe pirsgirêk, lê şeqama parlamentereke jin dikin pirsgirêk." Tuncel ne poşman e û dibêje, "Eger tu gelê min bombe bikî, ez ê jî şeqamê li te bixim"

**Gelo armanca Newroza 2011'an çi bû, we dixwast peyamek çawa bidin raya giştî û ev peyam giha cihê xwe an na?**

Newroz li seranserê Kurdistanê bi baweriya azadiyê û hêviyeke mezin destpêkir, lê mixabin bi bombeyên gazê, girtina bi sedan kesan û bi êrîşên hovane dom kir; dixwestin naveroka wê reş bikin. Em van êrîşan wek bersiva AKP'ê ji bo çar daxwazên gelê Kurd dibînin. Ev daxwaz jî ev bûn: Mafê perwerdeya bi zimanê dayîkê, serbest berdana girtiyên siyasî, rawestandina operasyonên leşkerî û daxistina bendava hilbijartinê. Kurdan li qad û kolanan banga azadiyê kirin, lê hikûmeta AKP'ê bi êrişên xwe nîşanê me da ku ew îradeya gelê me nasnake.

**Çi li Silopiyê qewimî?**

Di şahiya Newrozê ya li Silopiyê de 70 hezar kes amade bûn, û ji sedî 70'yê wan jin bûn. Dema ku gel ber bi Konê Aştî û Çareseriya Demokratîk ve meşiya rastê astengiya polîsan hat. Berpirsê polîsan ligel peymana ku me bi wan re kiribû, me hîn pişta xwe nedabû wan dest bi êrîşkirina av û bombeyên gazê kirin. Ev êrîş bi pilan bû û berê hatibû organîzekirin. Jin, zarok, kal û pîr li erdê bûn. Hinek kes ji xwe çûbûn, polîs jî bê rawestan êrîş dikirin û dixwestin hinek kesan bigirin. Her der bûbû wek qada şer. Gel birîndar e, li erdê dinale, tên girtin û ji me tê xwestin ku em deng nekin.

Wiha nabe, eger tu bombeyên gazê bavêjî gelê min, ez ê jî şeqamê li te bixim!

**Hûn poşman in ji ber wê şeqamê?**

Xweziya nebûya, lê ez ne poşman im. Di atmosfereke wisa de kî bûya wê wisa bikira. Li aliyekî bombeyên gazê, li aliyê din şeqamek biçûk…

Çaqê hevala me Sevahir Bayindirê sala borî li Silopîyê şikandin, kesî dengê xwe dernexist. Li Silopiyê erîşkirina ser parlamenteran bûye mode, ev ji kê hêz distînin ku wiha êrîş dikin?

Eger xwediyê wê şeqamê zilam bûya, wê ewqas nehata nîqaşkirin, lê dema ku jinek vî tiştî dike, qiyametê radikin. Çaqê parlamentereke jin dişkê ev dibe tiştek normal, lê şeqama parlamentereke jin dibe pirsgirêk. Ev e nêzikatiya Tirkiyê ji bo jinan, ev e Silopiya Erdogan…

**Niha di raya giştî de niqaşa lêborînê heye, gelo wê kî ji kê lêborînê bixwaze?**

Kesê ku divê lêborînê bixwaze, ne em in, Hikûmeta AKP'ê ye. Hêzên ku bi bombeyên gazê êrîş birin ser gel bila lêborînê bixwazin. Ew desthilatdariya ku cejna gel bi êrîş, bombe û polîsan belav dike bila ji gel lêborînê bixwaze. Hikûmeta AKP'ê ji ber êrişên xwe yên Newrozê divê lêborînê bixwaze.

***Hevpeyvîn: Medya Deniz***

**Xweziya nebûya, lê ez ne poşman im**




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.


Wêne: Rûdaw
Di merasimê de Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî amade bû


Wêne: Rûdaw
Termê Cewher Namiq bi rêya firokxaneya Hewlêrê gihişt Kurdistanê

# “Penceşêra wî pir dijwar bû, lê wî milmilaneyek ne hêsan li beramber kir”

**Rûdaw (Hewlêr) -** Têkoşerê Kurd Cewher Namiq Salim di sibeha 22'ê Adara 2011'an li nexweşxaneya Hodînge ya li Swêdê ji ber nexweşiya penceşêra kezebê jiyana xwe ji dest da. Yek ji kesên ji nexweşxaneyê heya gihandina termê wî bo Kurdistanê ligel de, nûnerê berê yê Hikûmeta Kurdistanê li Bakurê Ewrûpayê, Teha Berwarî bû. Teha Berwarî zanyariyên derbarê nexweşiya Cewher Namiq û hinek dîtinên wî yên li ser bûyerên niha yên Kurdistanê dixe ber çavan.

**Rûdaw: Kek Cewher kengî û çawa hat Swêdê?**

**Teha Berwarî:** Nivîsîngeha kek Nêçîrvan Barzanî têkilî ligel min danîn û gotin kek Cewher wê ji bo çareseriya nexweşiyê bê Swêdê û xebera te jê hebe. Ez di 18'ê Adarê ligel xêzana xwe çûm û min ew li nexweşxaneya Hodînge ya li Swêdê dît.

**Moralê wî ketibû?**

Nexêr, pir bi moral û bihêz bû, lê min hest bi wê yekê kir ku hewl dida ji xêzana xwe re nebêje û bi berdewam ligel bû. Me jî ew yek li berçav digirt. Êdî ji bo em ji meseleya termînolojiya bizîjk û li ser daxwaza wî rastî pirsgirêkan neyên, rê ji min û kek Memo re hatibû dayîn ku li ser rewşa tendirûstiya wî zanyariyan wergirin. Penceşêra wî ‘primary liver cancer’ bû û yek ji cûrên herî dijwar ên penceşêrê ye. 12-15 bizîjkan serpereştiya çareseriya kek Cewher dikirin û hemû jî pispor bûn. Birêz serok bi xwe jî telefon da kek Cewher û bi berdewamî ji Kurdistanê dişopand.

**Dema kek Mesûd telefon dayê, hûn li wê derê bûn?**

Belê, ez bawerim 4'ê Adarê bû. Kek Cewher bi wê telefonê pir keyfxweş bû. Piştî vê yekê jî birêz serok bi rêya kek Sîdad Barzanî ve bi berdewamî dişopand. Kek Nêçîrvan jî ji min re got; “Hûn bipirsin, li ku dera cîhanê pisporên zîrektir hene bibin wê derê.” Lê kek Cewherê ku ji sala 1980'an ve li Swêdê dijiya, bi swêdî dizanî û dizanî ew bizîjkên ku serpereştiya wî dikin, kesên pir jîrin û pişta wî pê qayîm bû. Birayê kek Cewher bi xwe li Yewnanîstanê balyoze û pirs kiribû. Roja 22'ê Sibatê bizîjkan ji Karolînska vegûhestin bo Kilînîka Karolînîska ya di nava nexweşxaneya Hodînge ya li Stocholmê de. Di dema ku li nexweşxaneyê hinek rojan baş bû, diaxivî û li ser şîreta bizîjkan me tevger pê dikir. Ji ber digotin, eger tevger bike û xwarinê bixwe, dibe ku bihêz bibe û em bikarin emeliyat bikin.

**Kengî bi temamî tevgera wî rawesta?**

Ji 18'ê Adarê û şûn de. Roja piştî wê jî her diaxivî, lê ji piştî nîvro ve êdî karîna bersivdanê nemabû û bi dest bal dikişand. Roj û nîvê berî ku wefat bike, êdî tevgerkirin bi tevayî nema bû. Bi rastî ligel nexweşiyê milmilanêyek pir ne asan hebû. Dema ku min ew milmilanê didît, ev yek dihat bîra min û me timî jêre digot: “Jiyan milmilanê ye.”

**Li wê derê gelek kes dihatin serdanê yan jî serdan sinordar kirî bû?**

Şîreta bizîjkan a ji bo me ew bû, xelk zêde neyên serdana wî. Timî nêzî 10-15 kes li derve bûn û me wisan ne dikir ku gelek kes biçin serdana wî. Ez piştrastim niha jî gelek dostên wî, ji me aciz dibin.

**Behsa rewşên siyasî yên li Kurdistanê dikir? Bi taybet jî rojên ku hatî Swêdê li Kurdistanê bûyer pir germ bûn.**

Ew 16'ê Sibatê giha Swêdê û 17'ê Sibatê jî bûyerên Silêmanî dest pê kirin. Me hewl dida ku rewşek aram hebe, lê wî bi xwe behsa rewşê dikir. Nerînên kek Cewher li ser wan bûyeran hebû, lê tenê tiştek ji min re got: “Eger te ligel biraderan (diyare mebesta wî biraderên rêvebêriya PDK'ê bûn) axivî, nerîna min wisane: eger çi bê kirin û baregehan jî vala bikin, bila tiştekî nekin ku bikeve ser PDK'ê.” Armanca wî ew bû, bihayê baregehekî ne ew e ku PDK bi wê sedemê karekî bike û zererê bigihîniyê. Ango armanca wî ew bû, şidet neyê bikaranîn. Ev yek ji min re gelek cihê ecêbmayînê bû, bi wê rewşa tendirûstiyê ve li ser textê nexweşxaneyê wisan difikirî. Ev dilsoziya ewqas zêde ya ji bo wê rêbaza ku tê de kar kirî û ji bo rewşa Kurdistanê jî.

**Hest bi wê yekê dikir ku ji bo lêdana PDK'ê tiştek heye?**

Belê, min wisan hest pê dikir. Ji ber ku navê endamekî serokatiyê anî ku di pileyek bilind de ye. Ez li wê derê navê wî nabêjim û got: “Ji min re gotiye bila xebera we pir ji we hebe, pîlan û milmilanêyên zêde hene. Çi be kirin, tiştekî nekin ku encamên xirab bi xwe re bîne.”

**Ji bo derketina ji vê rewşê, çi pêşniyarên wî hebûn?**

Bi rastî me biryar girtibû em pir behsa siyasetê nekin, ne tiştek baş bû ku em di wê rewşê de wê gotûbêjê ligel bikin û eger bi xwe behs kiriban. Lê hinek caran bi xwe pirs dikir û digot, çi heye? Pirsa şer û kuştinên Lîbya jî dikir ku wê demê gerim bûbû. Bi nerîna wî gûhertinên mezin li navçeyên Rojhilata Navîn di rê de ne.

**Nûçeyek wisan hat belavkirin ku Cewher Namiq hatiye jehrî kirin, ligel xizim û kesên nêzî wî, ti gûmanek wisan hebû?**

Yê wisan dibêje, bila îspat bike. Wê demê xêzana wî dikare bi belge û nameyên nexweşxaneyê yên fermî bersiva xwe bide. Eger yek biçe nexweşxaneya welatekî Ewrûpî û bi taybet jî Swêdê, hemû tişt tê dokumentkirin ku ki ye û çi ye. Ti hêz jî nîne bikare dîtinên bizîjk li ser nexweşiyekê bigûherîne. Swêd ne Rojhilata Navîn e.

**Helwesta malbata kek Cewher çi bû?**

Baweriya wan bi van gotinane nîne. Bi baweriya min ev tiştek siyasî bû. Tiştek pir ne mirovane ye, xêzaneke nexweşekî wisan mezin hebe, tu biçî û bi tiştek bê bingeh êşek derûnî bidiyê. Ev li ti cihekî cîhanê tune, lê mixabin ku hinek xelkên Kurdistanê tiştên bi vî awayî dikin.

## Kê çi derbarê wefata Cewher Namiq de got?

- Rola kekê Cewher di serkirdayetiya demkî de qet nayê jibîrkirin, ew mirovê rojên giran bû. *(Serokê Herêma Kurdistanê, Mesûd Barzanî)*
- Koça dawî ya kek Cewher Namiq xisareke mezin bû li gelê me û bizava wî ya demokratîk û rizgarîxwaz ket. *(Serokkomarê Îraqê, Celal Talabanî)*
- Kek Cewher bi wateya peyvê exlaq bilind û destpak û wefadar bû. *(Serokê Parlamentoya Kurdistanê, Kemal Kerkûkî)*
- Kek Cewher mînaka kadro û serkirdeyê canfida û xwebexş ê neteweyî bû, ji devera başûr a herî dûr heya devera bakur a herî bilind. *(Cîgirê Serokê PDK'ê, Nêçîrvan Barzanî)*
- Kek Cewher yek ji serkirdeyên naskirî yên çaksazî û reformê li Kurdistanê bû. *(Serokê Fraksyona Goran li Parlamentoya Kurdistanê, Kardo Mihemed)*

**Nûçe berî jiyana xwe ji dest bide hatibû belavkirin, wî bi xwe ew nûçe ne bihîst?**

Nexêr, lê zarok û xizmên wî zanîn ku tiştek wisan hatiye belavkirin. Mixabin hinek kanalan jî bi navê çapemeniya azad hatin û ew nûçe vegûhestin, di demekê de ku nabe nûçeyên bi vî awayî bê bingeh bidin. De başe ez wekî kesekî nêzî kek Cewher niha daxwaza belgeyan ji kesên ku ew tişt belavkirîn dikim. Bila ew belgeyan bînin ku hatiye jehrkirin, ji bo em jî belgeyan nîşanî wan bidin ku ne wisane.

▶rûpela 14

## Rawestgehên jiyana Cewher Namiq Salim

- Di sala 1946'an li gundê Berlût a girêdayê navçeya Kelar ji dayîk bûye. Lê li gor gotina hinek xizmên nêzî wî, sala rast a dayîkbûna wî 1948 e.
- Kolêja aborî û siyasî li zanîngeha Mustensîrye ya Bexda xwendiye. Di zarokatî û ciwaniya xwe de li Bexda pir jiyankiriye.
- Di salên 60'an de çûye nav rêzên Yekitiya Xwendekarên Kurdistanê û li Bexda yek ji endamên diyar ên wê rêxistinê bû.
- Di sala 1972'an de çûye nav rêzên şoreşê. Di ragihandina PDK û herwiha wekî endamekî polîtburoya PDK'ê kar kiriye. Her ji wê demê ve bûye cihê baweriya serokê şoreş û PDK'ê Mele Mistefa Barzanî.
- Belavoka yekemîn a destpêkirina şoreşa 26'ê Gulanê ya Partiya Demokrat a Kurdistanê ji aliyê wî ve hatiye nivîsandin.
- Di kongreya 9. de yek ji 10 endamên serokatiya PDK'ê ye ku xwe ji bo serokatiyê nekiriye namzet, lê girêdayî biryarên kongreyê maye û wekî endamekî PDK'ê maye. Têkiliyek wî ya berdewam li gel serokatî û serokê PDK'ê hebû. Ew ji 9 biraderên xwe cûda, tevlî damezirandina Partiya Gel nebû. Di salên jiyana xwe ya li Swêdê, gelek endamên PDK'ê perwerde kiriye.
- Sala 1989'an li ser daxwaza Serokê PDK'ê tevlî kongreyê bûye, despêkê wekî Endamê Komîteya Navendî û piştre jî ji bo Endamê Polîtburoya PDK'ê hatiye hilbijartin. Bûye berpirsê mekteba rêxistina PDK'ê.
- Di dema raperîna 1991'an de berpirsê navenda Kerkûkê yê eniya Kurdistanê bû.
- Piştî hilbijartinên 19.05.1992'an wek yekemîn Serokê Parlamentoya Kurdistanê hat hilbijartin û heya dawiya sala 1999'an di wî postî de maye.
- Di dema despêkirina şerê navxweyî de û ligel hêjmarek parlamenteran gelek hewla dirûstkirina aştiyê da. Ji bo aştiyê 103 rojan ji parlamentoyê derneket û li dijî wê yekê bû ku ji bo bidawîkirina wî şerî, pişta xwe bidin dewletên dagirkerên Kurdistanê.
- Piştî hilweşîna rejîma Saddam (2003) xwe ji karên hizbî vekêşand.
- Piştî vekişandina ji karên hizbî, dest bi nivîsîna hinek lêkolînan kir û hinek ji wan hêj nehatine belavkirin.

# Şivan bi mikrofona polîsan stranan got



**Den Haag (Rûdaw) -** “Roja dawî ya festîvala Newrozê li bajarê Den Haagê bû rojek wisa ku organîzerên wê şerm dikin.” Ev axaftina organîzerê wê festîvalê Xerîb Ozcan bû bo Rûdawê. Sedema şermê jî ew bû ku "Pêwîst bû ew li ber çavên biyaniyan Kurdekî ji êrîşa Kurdekî din biparêzin." Mebesta Ozcan hunermend Şivan Perwer bû ku dixwest di konsera Den Haag de stranan bêje, lê hin Kurdên amadebûyî nehiştin. Li dawiyê polîsan salon betalkirin û Şivan bi neçarî li ser cadeyê bi mîkrofona polîsan stran gotin.

Festîvala Newrozê li Holanda bi piştevanî û çavdêriya şaredariya Den Haagê her sal ji aliyê hejmareke komele û rêxistinên Kurd tê lidarxistin. Festîvala îsal roja 20’ê Adarê dest pêkir û heta 27 mehê bi hejmareke pêşangeh û çalakiyên kulturî yên din berdewam kir.

Di roja dawî ya festîvalê de qewl bû ku Şivan Perwer, Fatê, Hesen Şerif û Niyaz Şeyda konsereke stran û dawetê saz bikin.

Organîzerê festîvalê dibêje ku wan hewl dabû komele û rêxistinên girêdayî PKK jî beşdarî wê festîvalê bibin, "Lê wan digot divê wêneyê rêberê me li wî cî bê daleqandin. Me jî got eger em rê ji wê yekê re bidin, divê bihêlin wêneyên serokên din jî bên daleqandin, şaredariya Den Haagê jî ev kar qebûl nake."

Xerîb Ozcan dibêje ku hefteya borî wan bihîst ku bombe di konsera Şeva 27 Adarê de heye. “Polîs û Şivan Perwer jî hatin agehdarkirin. Digel destpêkirina konserê ji nêzikî 50 kes hatin û ji xelkê re gotin em leşkerên Apo ne. Wan dixwest rê li Şivan Perwer bigirin ji bo ku stranan nebêje.”

Di dema konserê de berdevkê polîsên Den Haagê, Robert Salomi dibêje, "Gotin bombe hatiye danin, em jî neçar man ku salonê vala bikin, le pişt re diyar bû ku ne rast e." Ozcan dibêje ku digel hatina polîsan ew 50 kes winda bûn û mêvan jî çûne derve û nexwestine herin mal. "Me ji polîsan xwest û ew razî kirin ku Şivan Perwer li ser kolanê stranan bêje. Şivan jî bi mîkrofona polîsan li ber deriyê salonê stranên şoreşgerî gotin.”

Ozcan ji we yeke aciz e ku ew li Ewrupa neçar mane Kurdekî ji Kurdekî din biparêzin.

### Rêxistineke nêzikî PKK’ê: Pêwendiya me bi wî karî tune

**Seroka Federasyona Komeleyên Kurd li Holanda, FED-KOM, Aliye Zengin ku nêzikî PKK tê naskirin ji Rudawê re got ku ti pêwendiya wan bi wî karî tune û dom kir. “Em bi wan karan navê xwe xerab nakin. Me talîmat jî nedane endamên xwe ku karên wiha bikin. Le ku hin kes çûbin wê derê û nerazîbûna xwe nîşan dabin, haya me jê tune.”**

**Rêveberê Giştî yê Şirketa Adil Mutehîde, Dr. Ruşdî Seîd:**

# Piştî ji nexweşxaneyê derket Tatlises tê Kurdistanê

▶Gava Îbrahîm min dît dest bi girînê kir, dilê min tije bû û min ew maç kir

**Hawar Ebdulrezaq** Hewlêr

Rêveberê Giştî yê Şirketa Adil Mutehîde Dr. Ruşdî Seîd hefteya borî li nexweşxaneyê serdana Tatlises kir û ragehand ku 45 rojên din ew Tatlises ligel xwe tîne Hewlêrê.

Rêveberê Giştî yê Şirketa Adil Mutehîde Dr. Ruşdî Seîd ku di projeya niştecihbûnê ya Deşta Buhiştê li Hewlêrê de bi Îbrahîm Tatlises re şirîk e, bo Rûdawê ragehand ku ew ligel Tatlises axiviye û niha rewşa wî pir baş e û 14 rojên din wê ji nexweşxaneyê derkeve: "Ligel doktorên wî axivîm, ji min re gotin 14 rojên din ji nexweşxaneyê derdikeve û 45 rojên din jî Îbrahîm ligel xwe tînim Kurdistanê û em ê ahengê jî saz bikin."

Dr. Ruşdî eşkere kir ku roja 23’ê Adarê çûye Stenbolê û li nexweşxaneyê serdana Tatlises kiriye. Navbirî zêdetir behsa serdana xwe kir û got: "Çênedibû ti kes here odeyê, lê Ehmedê kurê wî ji min re got, Îbrahîm dixwaze te bibîne û doktorên wî razî kir ku herim odê. Gava Îbrahîm min dît, di cih de dest bi girî kir. Dilê min jî tije bû, lê ji ber rewşa wî min xwe girt û jê re got negirî, tu merd î û xelk zêde lavijan ji te re dikin û Xwedê hezke tu wê baş bibî. Min ew maç kir, û gava derketim derve dîsa dest bi girînê kir, ez jî gava derketim derve bi rastî giriyam."

Piştî bûyera êrîşa di şeva 13’ê Adarê de li Stenbolê, medyaya Tirk yek ser tawan bi wan projeyan ve girêda ku Tatlises li Herêma Kurdistanê ligel Dr. Ruşdî kar dike û bi awayekî sergirtî amaje dan nakokiya di navbera Tatlises Ruşdî Seîd de. Dû re jî PKK hat tometbarkirin, lê dû re lêkolînan derxist ku ev texmîn ji rastiyê dûr in.

Ruşdî Seîd wiha axivî: "Kesên ku ev gotin li ser min kirin niha weke mişkan xwe veşartine û di civîna çapemeniyê ya li pêşber nexweşxaneyê min ji wan re got ku Îbrahîm şeref û namûsa Dr. Ruşdî ye."

Dr. Ruşdî red kir ku berî bûyerê ti nakokî û pirsgirêkeke wî ligel Tatlises hebe: "Roja 6’ê Adarê li Tirkiyê bûm û Tatlises min vexwend bernameya Ibo Show û 3 rojan piştî wê jî bi hev re li Stenbolê me kebab xwarin û li ser projeyên xwe civîneke çapemeniyê da û tê de gotineke xweş jî kir û got eger piştî 3 salên din Hewlêr ji Dubey xweştir nebû, ez ê simbêlên xwe kur bikim."



Wêne: Rûdaw

Ruşdî Seîd roja 23’ê Adarê li nexweşxaneyê serdana Tatlises kir

Dr. Ruşdî eşkere kir ku Tatlises bi niyet bû di nîvê vê mehê de serdana Kurdistanê bike: "Di heman civînê de Îbrahîm ragehand ku 18’ê mehê tê Kurdistanê û li wir pêşniyar kir ku her kesek villa û xanî li Deşta Buhişt kirîbe bo xwaringehekê bên vexwendin û li wir stranan ji wan re bêje."

PKK jî ku ji aliyê beşek ji medyaya Tirk guman li ser hatin kirin ku destê wê di vî karî de hebe, bi tundî vê tometê red dike. Berdevkê PKK’ê Ahmet Denîz bo Rûdawê daxuyand: "Me ji roja ku brahîm Tatlises ket ber êrîşê de hêviya zû dermankirinê jê re xwest û me ev êrîş şermezar kir. Careke din jî li vir tekez dikin ku ti pirsgirêka me ligel IÎrahîm Tatlises nebû û ti têkiliya me ne ji dûr û ne ji nêzîk bi vê êrîşê re tune."

Denîz di bersiva senaryoyên medyaya Tirk de jî got: "Şervanên PKK’ê hene, ger PKK bixwaze kesekî bikuje ji ber çi wê hawara xwe bigihîne mafya? Ev plan e û mebesta wê xurtkirina pêgeha AKP’ê di hilbijartinên dahatû de ye. Ev plan cara yekemîn berî du mehan di rojnameya Zaman de ji aliyê Sadat Laçîner û Îhsan Daxî dihat danîn. Li gor vê senaryoyê PKK wê di qonaxa hilbijartinan de êrîşî hunermend û ronakbîrên Kurd bike."

### Kanala televizyonê ya Adil Mutehîde - Tatlises tê vekirin

**Dr. Ruşdî Seîd ragehand ku di Nîsanê de vekirina kanala asmanî ya Adil Mutehîde-Tatlises radigihîne.**

**Ev kanal wê li ser a Nile Sat, Ereb Sat û kanaleke hunerî, aborî û werzişî weşanê bike û ji sedî 70’ê bi kurdî û ji sedî 15 erebî û ji sedî 15’ê wê jî tirkî û îngilîzî be. Li gor gotina Dr. Ruşdî Seîd, ew kesên beşdariyê di vê kanalê de dikin ji sedî 25 kesên herî navdar ên cîhanê ne: "Hunermendên cîhanî yên ku tevî vê kanalê bibin Îbrahîm Tatlises, Polat Alemdar, Hulya Avşar û Sibel Can. Ji Amerîka jî Arnold Sachwarzeneeger, Sîlvester Stallone, Shakîra, John Travolta, Jakie Chan û Richard Geer. Ji Misriyan jî Adil Îmam, Semîr Xanim, Ehmed Bidêr, Nûrî Şerîf, Şeban Ebdulrehîm, Ayîde Riyaz, Mervet Emîn, Nebîle Ubêd û ji welatên Erebî yên din jî Diyana Kerezon û Diyana Hedad."**



# Abdullah Ocalan nameyek ji Celal Talabanî re şand



▶Ocalan ji Talabanî daxwaz dike ku ji bo çareseriyê karînên xwe bixe tevgerê

▶Talabanî diyar kir ku ew ê ji bo nêzikatiya herdu aliyan bikeve nava xebatê

Hêmin Xoşnaw Amed

Hevseroka Kongreya Civaka Demokratîk KCD'ê Aysel Tugluk û parêzerê serokê PKK'ê Abdûllah Ocalan ji Rûdawê re diyarkirin ku wan nameyek a Ocalan gihandine Celal Talabanî.

Aysel Tugluk roja 15'ê Adarê bi serdanek ne çaverêkirî giha Herêma Kurdistanê û wiha hat belavkirin ku serdana wê ji bo wê yekê bûye ku berpirsên Kurd ji bo şahiya Newrozê ya Amedê vexwîne. Lê Tugluk di daxûyaniyeke de ji bo Rûdawê got ku wê "Ji Abdullah Ocalan nameyek taybet ji bo Serokkomarê Îraqê Celal Talabanî" anîbû.

Tugluk di serdana xwe ya ji nişkan ve ku du rojan dom kir, li Silêmanî Talabanî dît û derbarê wê hevdîtinê de ji Rûdawê re got: "Min nameyek taybet ji birêz Abdullah Ocalan ji Celal Talabanî re anîbû."

Hevseroka KCD'ê derbarê naveroka wê nameyê de got: "Bi hestkirina bi rolê Talabanî yê giring û karîna dîplomasî, birêz Ocalan daxwaz kir ku Talabanî karînên xwe yên ji bo çareserkirin û dîtina fikrek hevpar di nava Kurdan û dewleta Tirk de bixe tevgerê." Tugluk derbarê bersiva Celal Talabanî ya ji bo wê nameyê de jî got: "Talabanî xweşhaliya xwe anî ziman û diyar kir ku ewê ji niha û pê de hemû karînên xwe ji bo nêzîkbûna herdu aliyan bixe gerê."

Berpirsekî Kurd ku nêzî Kongreya Civaka Demokratîk e, derbarê serdana Aysel Tugluk a ji bo Herêma Kurdistanê got: "Ji bilî ku serdana Tugluk gihandina nameya Ocalan a ji bo Talabanî bû, di heman demê de KCD'ê daxwaz ji Talabanî û berpirsên Kurd kir ku di hilbijartinên parlamentoya Tirkiyê de bêalîtiyê biparêzin û daxwazê ji dengderên Kurd nekin ku dengê xwe bidin AKP'ê." Lê Aysel Tugluk red kir ku di wê derbarê de ligel Talabanî û berpirsên din ên Herêma Kurdistanê axivî be. Tugluk wiha pêdeçû: "Ew mesele di rojeva civîna me de nebû."



Tevî ku biryar bû Aysel Tugluk serdana Hewlêrê jî bike, lê piştî temambûna hevdîtina li Silêmaniyê, ew yekser vegeriya. Tugluk diyar kir ku ji ber sedemên 'teknîkî' neçû Hewlêrê û di vê derbarê de wiha got: "Di bernameya min de hebû ez serdana Hewlêrê jî bikim, lê ji ber ku serdana min a ji bo Herêma Kurdistanê du rojan paşde ket, herwiha ji ber hatina cejna Newrozê û hatina hêjmarek zêde ya mêvanan bo Amedê, diviyabû ez zû vegerim. Vê yekê jî wisan kir ku beşek ji bernameya serdana xwe ya ji bo Herêma Kurdistanê cîbicî nekim."



Xwişka Abdullah Ocalan, Fatma ji Rûdawê re got:

## Bi baweriya serok aştî û çareserî nêz bûye

▶Tendirûstiya serok zor baş e

▶Osman Ocalan dibêje, Fatma Apocî ye û keyfa min jêre nayê

**Amed (Rûdaw) -** Xwişka serokê Partiya Karkerên Kurdistan PKK'ê, Abdullah Ocalan, Fatma yek ji behsdarên şahiya Newroza li bajarê Amedê bû ku milyonek kes tevlê bûn. Rûdawê di nava wê ahengê de bi zimanê kurdî çend pirs ji Fatma kirin û wê jî bi kurdî bersiv da. Fatma Ocalan piştî revandina Ocalan a ji Kenyayê (1999), bi derdewamî diçe girava Îmraliyê û serdana wî dike. Lê gelek caran bi rêya mîkrofonê ligel hev diaxivin. Fatma dibêje ku heya niha tenê carekê ligel birayê xwe rûbirû rûniştiye û carên din jî li pişt camek ronî bi telefonekê ligel hev axivîne.

**Rûdaw: Hûn diçin serdana Abdullah Ocalan, rewşa tendirustiya wî çawa ye?**

**Fatma Ocalan:** Belê rast e, bi berdewamî ez diçim serdana wî, rewşa tendirustiya wî pir baş e. Heta niha carekê ez rûbirû ligel wî rûniştime û gelek baş diyar bû. Derbarê Riha (Urfa), gund û kesên din de pirs ji min dikir.

**Derbarê çareseriya aştiyane de çi dibêje?**

Bi baweriya wî aştî û çareserî nêzîk bûye. Di heman demê de daxwazê ji hemû aliyan dike ku zêdetir hewl bidin û pişta xwe bi hev girêbidin. Tekezê li ser wê yekê dike ku çareserî tiştek wisa ye ku dest jê nayê berdan. Eger ew li girtîgehê be, yan jî li derve, wê hemû hewldanên xwe ji bo çareseriyê veqetîne. Gelek hêviya wî bi çareseriyê tê, ji bilî vê yekê fikra ti tiştek din nake.

**Têkiliyên we li gel Osman Ocalan hene?**

Nexêr, serok wê çawa rê bide ku têkiliyên me ligel hebe.

**Hûn çawa temaşeyî Osman Ocalan dikin?**

Ji ber karê kirî, em jê hez nakin û ew jî ji me hez nake. Wî karek baş nekiriye, derfeta wê yekê nehîştiye em jê hez bikin û rêzdariyê bidinê.

**Bi telefonê jî ligel wî neaxivine?**

Nexêr, carekê jî bi telefonê ligel wî neaxifîme. Wî jî hewl nedaye ku ligel me biaxive.

**Lê hûn berî çend salan li bajarokê Koyê (Başûrê Kurdistanê) çûn serdana Osman Ocalan?**

Nexêr, ez neçûme serdana wî û min serdana wî nekiriye. Ya çûyî serdana wî, xwişka min Hewa bû.

**Ew xwişka we niha jî diçe serdana wî?**

Xwişka min nexweş e. Ev sê sal e li ser cihê xwe ye û nikare bi piyan bimeşe. Eger na, dixwaze biçe serdana wî. Osman dibêje, 'ji ber Fatma Apocî ye, kêfa min jê re nayê.'

***Hevpeyvîn:***
***Hêmin Xoşnaw***


Wêne: Rûdaw



Pêla serhildanan Sûriyê jî da ber xwe

# Deraa serî hilda, Kurd bêdeng in!

Li Sûriyê li bajarê Deraa û derdorê gel li dijî rejîme Esad xwepêşandan nîşan dan û 37 qurbanî dan. Bêdengiya Kurdan didome.

**Besam Mistefa**

Piştî serhildanên ku li Misir, Tunus, Lîbya û Yemenê çêbûn, di 15'ê Adara 2011'an de dor giha Sûriyê û li bajarê Deraa ku dikeve başûrê Sûriyê, destpê kir. Ev serhildan bi sedemê girtin û îşkencekirina zarokên xwendekar ên xwendingehekê ku hikûmetê îdia kir dirûşmên dijî Beşar Esad li ser dîwaran nivîsandine, derket. Lê piştgiriyeke zêde li bajarên din ê Sûriyê bo Deraa heta niha çê nebûye û Kurd bêdeng in.

## Li Deraa 37 qurbanî hene

Li gor saziyên mafên mirovan û civaka sivîl ên Sûriyê, ji 15'ê Adarê û heta niha 37 qurbanî ji zarok, pîr û jinan li Deraa bi destê hêzên ewlekariyê yên Sûriyê hatine kuştin û bi sedan kes hatine birîndarkirin. Ji van 6 kes di êrîşa hêzên ewlekariyê yên Sûriyê li ser mangirtiyên mizgevta Umerî de hatin kuştin.

Gelek kes jî di dema ji taziyeya kuştiyan vedigeriyan, rastî gulleyên hêzên Sûriyê hatin û jiyana xwe ji dest dan. Xelkê gundên derdora Deraa weke Anxel, Casim û Herak hewl didin dorpêça bajêr bişikînin û derbasî wê bibin û alîkariya serhildêrên bajêr bikin. Dema van kesan xwestin nêzî navenda bajêr bibin hêzên Sûriyê agir berdan wan û 10 kes ji wan kuştin û gelek kesên din jî birîndar kirin, bi vî awayî hejmara kuştiyan li Deraa giha 37 kesan û her ku diçe hejmar zêdetir dibe.

Hêzên opozîsyonê ji bo xwepêşandanên berfirehtir ên li tevahiya Sûriyê bang dikin. Roja Înê 25'ê Adara 2011'an ji aliyê opozîsyona Sûriyê ve weke "Îna rûmetê" hat binavkirin.

## Civaka navnetewî Rêjîma Sûriyê şermezar dike

Hêzên opozîsyona Sûriyê bi riya malperên xwe yên înternetê û Facebookê ji bo xwepêşandanên li Deraayê destpê kirine, li seranserê Sûriyê belav bibin, bang dikin û ji bo xwepêşandanan jî roja Înê hat diyarkirin. Di bin zexta xelkê Deraayê de, serokê Sûriyê Beşar Esad waliyê Deraa Feysel Kelsum ji kar avêt, ku ev daxwazeke xwepêşanderan bû.

Ji aliyê din ve, ofîsa Neteweyên Yekbûyî (NY) a Mafên Mirovan li Cenevrê daxwaz ji hikûmeta Sûriyê kir ku di kuştina 6 kesan li Deraa di dema xwepêşandanan de, lêkolînê bike.

Yekîtiya Ewrûpa (YE) jî bi tundî kiryarên tundûtûjî û kuştinê ku xwepêşander li Sûriyê şermezar kir. Wezîra Derve ya YE Katharine Aston got ku binpêkirina xwepêşanderên ku nerazîbûna xwe li ser desthilata Beşar Esad pêşan didin "nayê qebûlkirin" û wiha pêde çû: "YE bi tundî binpêkirina zêde û bikaranîna gulleyan dijî xwepêşandanên aştiyane li Sûriyê ku bû sedemê kuştina gelek kesan, red dike."

Herwiha Amerîka bikaranîna "hêza pir zêde" ji aliyê desthilata Sûriyê dijî xwepêşanderan şermezar kir.

Berdevka Rêxistina Sûriyê ya Mafên Mirovan Munteha Sultan Atraş jî gullebarankirina xwepêşanderan li Deraa şermezar kir û got: "Divê êdî Beşar Esad guh bide daxwazên gelê Sûriyê û azadiyê bide gel."

Fransa ji Sûriyê xwest tundûtûjiyê li dijî hevwelatiyên xwe bikar neyîne û mafê wan ê xwepêşandanan biparêze.

## Rebal Esad: Kurd wê bêdengiya xwe bişkênin

**Hikûmeta Sûriyê ku ji bo Newrozê herdem pirsgirêk derdixist, îsal ti pirsgirêk çênekir û Şêwirmenda Beşar Esad, Buseyne Şeban pîrozbahiya Kurdan kir. Çavdêr dibêjin ev ji bo wê yekê bû ku Kurd weke Deraa serî nehildin. Hikûmeta Sûriyê herwiha 260 girtiyên siyasî azad kir ku 3 ji wan Kurd in û sê çarîka mahkûmiya xwe derbas kirine.**

**Lê li gor gotina pismamê reviyayî yê Beşar Esad, Rebal Esad ku li Londonê dijî, vê karê hikûmeta Sûriyê serkeftî nabe û ji CNN'ê re dibêje: "Ew ji bo pîrozbahiya cejna Newrozê nikarin ji ber xwe wî mafê bidin Kurdan û çaverê jî bikin Kurd daxwaza mafên xwe yên din nekin, weke wergirtina nasnameyê û axaftina bi zimanê kurdî. Piraniya Kurdan dixwazin ligel dewleta Sûriyê bimînin, lê ligel vê jî tê çaverêkirin ku bêdengiya xwe bişkênin."**

## Îran û Hizbullah piştîvaniya Esad dikin

Serokwezîrê Tirkiyê R. T. Erdogan ragehand ku wî Beşar Esad agahdar kiribû ku diberewşa deverê bigihe Sûriyê jî û divê berî ku bayê şoreşan bigihiyê, ew reformên demokratîk li welatê xwe pêkbîne.

Herwiha hat ragehandin ku endamên partiya Şî`eyan a Lubnanî Hizbullahê di serkutkirina gelê Sûriyê de li Deraa alîkariya hêzên Sûriyê kirine. Parlamenertê berê yê Sûriyê Mamûn Humsî daxuyand ku agahiyên rast li cem wî hene ku Hizbullahê ji bo binpêkirina xwepêşanderan li mizgevta Emewî li Şamê û li Deraayê, endamên xwe şandine Sûriyê.

## Salim: Hikûmeta Sûriyê di reforman de dereng ma

Berdevkê berê yê gruba Îxwan Musilmîn a Sûriyê û Rêveberê Navenda Şarq El-Erebî li Londonê Zuhêr Salim bo Rûdawê ragehand ku serhildana gelê Sûriyê jî yek ji serhildanên ku navçeya Erebî dane ber xwe ye û wiha got: "Pêngavên ku hikûmet di bin zexta xwepêşandan û nerazîbûna gel de dikin, bê bandor û dereng in. Loma bawer dikim dem qediyaye û rêjîma Esad nikare reforman bike, yanî divê bê hilweşandin." Salim wiha domand: "Li Deraa hêzên ewlekariyê bi xwe bûn sedem ku bûyer mezintir bibin ji ber bi awayekî hovane êrîş birin ser xwepêşanderên ku bi awayekî aştiyane xwepêşandan dikin. Ti rêjîmeke niştimanî welatiyên xwe nakuje."

Zuhêr Salim diyar kir ku bûyer ne tenê li Deraa lê li Şam, Heleb, Hums û Cezîrê û gelek deverên din jî çêbûne û wê hê berfirehtir bibin: "Bawer dikim, xwepêşandan li seranserê Sûriyê belav bibin û Deraa bi tenê namîne."

Derbarê helwêsta Kurdan jî, Salim da zanîn ku gelê Kurd, Ereb û Aşûrî û hemû çîn û neteweyên Sûriyê wê rabin û kes guh nade partiyên xwe. "Li Misrê û Tûnisê jî dîsa xelk rabûn û gel bê ku guh bide partiyan û siyasetê rabûn ser piyan û serî hildan."

Endamê Komîteya Siyasî ya Partiya Yekîtiya Demokrat a Kurd li Sûriyê Mehmûd Mihemed ku weke Bavê Sabir tê naskirin bo Rûdawê diyar kir ku serhildana gelê Sûriyê jî yek ji serhildanên ku niha li welatên Ereban belav bûne û got: "Bi baweriya me piştî pêla guherînan li Rojhilata Navîn çêbû û bi taybetî şoreşên gelan bi serketin, ev bayê guherînan wê tevahiya rêjîmên komarî rake û rêjîmên mîrî û qeralî jî bide guherandin û reformkirin, ji ber ev rêjîm êdî nikarin weke berê desthilatên xwe bimeşînin û wê hewl bidin weke Brîtanya qeraliyên destûrî ava bikin."

Bavê Sabir ku çend sal di zindanên Sûriyê de derbas kirine, wiha dirêjî da axaftina xwe: "Desthilata Baasê ya şoven çi bike jî wê bayê guherînê bigihe Sûriyê û li Deraa û Şamê. Ev weke peşkên baranê ne. Opozîsyona Sûriyê piştgiriya van şoreşên demokratîk dike, rêjîma Sûriyê ji rêjîmên din xerabtir e, divê berî her kesî guherîn kiriban lê nekirin."

Navbirî ku niha nûnerê partiya xwe ye li Herêma Kurdistanê ye, wiha axivî: "Wê xwepêşandan li seranserê Sûriyê belav bibin. Heta rêjîm hilweşe û azadî li Sûriyê peyde bibe. Zilma hikûmetê bêtir ser me Kurdan hatiye kirin, lê rêz li biryara tevgera Kurdî digirim ku Kurd xwe nekin qurbanên berjewendiyên kesên din, lê eger li bajarên din xelk bilivin Kurd amade ne û wê rabin."

Bavê Sabir wiha dawî li axaftinên xwe anî: "Kurd piştgiriya van xwepêşandanan dikin û kuştina şehîdan şermezar dikin. Tenê hinek dem jê re divê û di nêzîk de wê Kurdên Rojavayê Kurdistanê rabin ser piyan. Rêjîmê baweriya xwe ji dest daye. Bi riya Rûdawê bangewazê tevgera kurdî dikim ku mala xwe sererast bikin û nakokiyên hizbî û teng bidin alîkî. Divê em hemû û di nav de jî hêzên opozîsyonê yên Ereb bibin yek deng û yek helwêst."

Wezîrê Derve yê Swêdê, Karl Bildt, ji bo Rûdawê axivî:

# Hikûmeta Kurdistanê bi çend pêngavên baş li pêşiya Hikûmeta Îraqê ye

Min tevgereke awarte dît gava li baregeha Wezareta Derve ya Swêdê li Stockholmê rûniştibûm û li benda hevdîtineke kurt bûm ligel Wezîrê Derve yê Swêdê Karl Bildt. Berpirsa ragihandinê ya Wezîrê Derve Anna Sharlota hat ba min û ez birim cem wî. Bi rê de sedemê wê tevgera zêde ron kir: Bûyerên niha yên cîhanê pir in û guherîn lezgîn in! Gelek şoreş û bextreşiya Japonê. Dîsa min hevdîtina xwe bi bîranîna Helebce destpê kir....

**Rûdaw: Îro 16'ê Adarê ye, rojeke giring e....**

**Karl Bildt:** Salvegera Helebce ye, erê!

## Proseya nasandina komkujiya Helebce weke jenosîd meseleyeke mezin e

**Hevwelatiyekî Kurdî ji rêzê dipirse: Gava ev komkujî qewimî hemû cîhan bêdeng bû, 23 sal derbas bûn, niha kes nikare bêje ew neqewimiye, tawanbar ne ku tenê di desthilatê de lê di jiyanê de jî neman, ji ber çi nasandina vê komkujiyê weke jenosîd wisa aloz û dijwar e? Weke mînak Parlamentoya Swêdê berî salekê komkujiya Ermeniyan weke jenosîd nas kir, lê ya Kurdan red kir.**

Ev ne karê Parlamentoya Swêdê ye, ev biryareke siyasî ya mezin e. Meseleya Ermeniyan sala 1915'an bû, demeke dirêj di ser re derbas bûye. Meseleya Helebce nû ye li gor a Ermeniyan. Ev proseyeke mezin e, li Bexda hat destpêkirin jî, tawanbar hatin dadgehkirin.

**Saddam Husên ji bo meseleya tawanên wî dijî gelê Kurd nehat dadgehkirin.**

Elî Kîmyayî li ser wê meseleyê hat dadgehkirin. Bê guman wî jî ferman rasterast ji Saddam Husên wergirtibû.

## Desthilata du partiyan bi beloqî di Hikûmeta Kurdistanê de xuya ye

**Gelo Swêd dikare alîkar be ji bo vê meseleyê, nasandina komkujiya Helebce weke cînosîd, di YE û NY de?**

Weke min got, divê ev prose ji Bexdayê destpê bike, li Parlamentoya Îraqê, karekî zêde jî pêwîst e. Bi baweriya me, niha ev giring e ku hevkariya avakirina Kurdistan û Îraqeke demokratîk a nû bikin.

**Vê dawiyê rêjîma Îranê dest bi darvekirina bi dehan ciwanên Kurd kir, bê guman haya we jê heye. Helwesta we himberî vê yekê çawa ye, çawa dikarin zextan li Îranê yan Tirkiyê bikin ku tundûtûjiyê himber gelê Kurd bikar tînin?**

Eger behsa Îranê bikin, ji bo vê meseleyê projeya biryareke me ligel Amerîka heye bo NY ku hêvîdar in bê pesendkirin da ku zexteke tund bixin ser Îranê daku dawî li van binpêkirinan bîne, yanî reaksyona me tund e. Li YE jî ev mesele di serê karnameyê de ye. Heftiya bê civîna wezîrên derve yên YE heye, tê de behsa wan karên pêdivî dikin ku divê bên kirin derbarê van binpêkirinan de.

**Swêd çawa berê xwe dide wan hemû şoreş û xwepêşandanên welatên Erebî û Rojhilata Navîn, van xwepêşandanên ku Îraq û Herêma Kurdistanê jî li xwe girtine?**

Karl Bildt: Eger bi taybetî em behsa Îraq û Kurdistanê bikin, em hêvîdar in avakirina Îraq û Kurdistanê bi awayekî demokratîk bi hevkariya Hikûmeta Îraq û Hikûmeta Herêma Kurdistanê serkeftî be. Bê guman ev ne proseyeke hêsan e, tevî ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi çend gavên baş li pêşiya Hikûmeta Îraqê ye, herwiha Kurdistan pêşkeftîtire ligel deverên din ên Îraqê, lê haya me ji xwepêşandanên Kurdistanê heye û bi hûrbînî berê xwe didin rewşê. Desthilata du partiyan bi beloqî di Hikûmeta Kurdistanê de xuya ye, van herdu partiyan gelek tiştên baş kirine, lê karên wan ên xirab jî hene. Gelek kes wisa fam dikin ku sîstema desthilatê li Kurdistanê sîstemeke siyasî ya hişk e, em hêvî dikin ku ev sîstem bê vekirin û Hikûmeta Herêma Kurdistanê sîstemeke siyasî ya başir bimeşîne. Wisa bawer im, di dawî de her wê wisa jî bibe.

**Tevger û trafîkeke zêde di navbera Swêd û Kurdistanê de heye, di astê şirketên bazirganî û rêxistin û xelkê de. Dihat çaverêkirin ku têkiliya di navbera Swêd û Herêma Kurdistanê, di astê hikûmî de, lezgîntir û zêdetir û xurtir be. Gelek kes dibêjin hûn ji karê Hikûmeta Herêma Kurdistanê bi tevahî ne razî ne.**

Bi baweriya min ev ne rast e. Ez bi xwe li Hewlêrê bûm û min konsolxane vekir, wisa bawer dikim ku hejmareke kêm a wezîrên derve yên welatan serdana Kurdistanê kirine, wezîra me ya bazirganiyê Îva Biorling meha bê serdana Kurdistanê dike bo îmzekirina çend peymanên bazirganî di navbera Swêd û Herêma Kurdistanê de, ev hatina wê ya duyemîn e. Têkiliyeke min a xurt ligel hevalê min Hoşyar Zêbarî heye, ku her çiqasî ew wezîrê derve yê Îraqê ye, lê nêzîkî Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye. Herwiha berî du mehan min serokê hikûmetê Berhem Salih dît û me behsa rewşa Îraq û Kurdistanê kir, em dixwazin van têkiliyên xwe bihêztir bikin. Dikarim bêjim pêşkeftina têkiliyên me ligel Herêma Kurdistanê pir baştir e û têkiliyên me ligel gelek welatên din ên navçeyê, yan weke mînak dikarim bêjim ku têkiliyên me ligel Herêma Kurdistanê bi heman lezgîniya têkiliyên me ligel Îndoneziya berbi pêşve diçin, her çiqasî Îndoneziya ji Herêma Kurdistanê pir mezintir e.

**Rola Swêdê û nerîna wê derbarê xwepêşandan û şoreşên welatên Erebî çawa ye?**

Em bêtir di çarçoveya YE de kar dikin, gotareke me ya hevbeş heye, rola me ya mezin dû re tê. Em jî alîkarîkirina van welatane dikin ji bo çespandina sîstemeke demokratîk a rast.

**Mirov dikare demokrasiyê bişîne derve?**

Nexêr! Sîstema Swêdê, Swêdî ye! Sîstema demokrasiyê ya li Fransa heyî, ji ya li Swêdê cûda ye. Ya li Fînlandiya bi awayekî din e. Her welatek xwedî sîstemek xwe ya taybet e û girêdayî kevneşopiyên neteweya wî welatî ne. Lê hemû jî demokrasî ne, ji ber mercên demokrasiyê yên serekî di nav de hene. Ew jî ev in; serbixweyî û rêzgirtina li mafê mirovan.

**Ango awayê arîkarîdayîna we ya ji bo pêvajoya demokrasîkirina wan welatan wê çawan be?**

Ya herî nêzîk Tûnis e. Wê hilbijartina parlamentoyê meha Hezîranê bê kirin û Yekîtiya Ewrûpa bi navê 'Democracy Support Mission' bernameyek taybet heye. Ji bo kar hêsaniya wê proseyê, wê YE wê bernameyê pêşkêşî Tûnisiyan bike. Piştre Misir li pêşiya me ye û dibe ku Lîbya jî li pey be.

**Mamelekirina li gel van welatane piştî şoreşê wê hêsantir bibe yan jî girantir?**

Eger ew hikûmetên nû yên piştî şoreşê rêyên demokratîk bişopênin, wê demê ti pirsgirêk dernakevin. Dibe ku despêkê problem zêde bin, lê piştre wê têkiliyên wan ji yên berî şoreşê pir baştir bibin.

## Ti têbîniya min li ser tometbarkirina Assange li Swêdê nîne

**Hinek kes rexne li Swêdê digirin û dibêjin ev daxwazkirina rêvebirê Wikileaks Julian Assange davikeke ji bo ku Swêd wî radestî Amerîka bikin.**

Ez bawer nakim ku Amerîka daxwaz ji kesekî kiribe ku wî radestî wan bikin, eger wisan bûye wê ji bo radestkirinê daxwaz ji Brîtanya kiriban. Li Swêdê Assange bi tawanekê hatiye gûnehbarkirin, ti têbiniyên min li ser wî nîne. Ev karê yasayê ye û dadgeh biryarê dide ku çi rûdaye, tawanbare yan jî na. Herwiha ez nizanim eger ji Amerîka bi tawanekê hatibe tawanbarkirin yan na. Ti têkilî û kontakek navbera dezgehên têkiliyan ên Swêd û Amerîka ji bo wê mijarê li holê nîne. Herwiha xebera min ji wê yekê çênebûye, li ser vê meseleyê kontakt navbera Amerîka û Brîtanya derbarê vê meseleyê de li holê heye yan na.

*Hevpeyvîn: Dara Îbrahîm*



Wêne: Rûdaw

## Têkiliyên me ligel Herêma Kurdistanê ji têkiliyên me ligel gelek welatên din ên navçeyê pir baştir in

**Biyografî**

**Karl Bildt**

Di sala 1948'an de ji dayik bûye. Ji 1986-1999 Serokê Partiya Moderat ya Swêdê bû. Ji 1991-1994 Serokwezîre Swêdê bû. Karl Bildt heta niha di gelek postên cuda de xebitiye, wek mînak ji bo Neteweyên Yekbûyî (NY) û Yekîtiya Ewrûpayê (YE). Di proseya aştî û avakirina Bosniya û beşên din ên Yugoslaviyayê de weke nûnerê taybet ê sekreterê NY li Balqanê kar kiriye. Karl Bildt ji ber beşdariya wî di serokatiya 'Civata Azadkirina Îraqê' de bi tundî hat rexnekirin. Civata Azadkirina Îraqê rêxistinek bû ku piştgirî di êrîşkirina ser rêjîma Saddam û dagîrkirina wê di sala 2003'an de dikir. Bildt ji sala 2006'an ve Wezîrê Derve yê Swêdê ye.

Birader derbarê guftûgoyên vê dawiyê yên di navbera aligirên PKK'ê û Şivan Perwer de:

# Şivan û PKK herdu jî xelet bûn

**Birader: Hemû partiyên Kurd wek hev in: Eger tu xizmeta wan bikî tu baş î, kengê te tembûra xwe hilgirt û got serbixwe me û ji te cuda me, tu xirab î.**

Birader ji gundê Mûsika yê girêdayî bajarê Mêrdînê li Bakurê Kurdistanê ye. Ev 24 sal in li Hollanda dijî. Berê qadroyekî siyasî bû, niha jî weke hunermend xwe dûrî siyasetê nabîne. Ji bilî gotina stranan, li Hollanda karê şano û sînemayê jî ligel Hollandiyan dike. Lê hêviya wî ew e bikare li Kurdistana azad bijî. Di dema serdana wî bo ofîsa Rûdawê li Hewlêrê, me ev hevpeyvîn ligel çêkir.

**Rûdaw: Di van salên dawî de car caran tu tê Başûrê Kurdistanê, dixwazî bibî Başûrî?**

**Birader:** Nexêr, dixwazim bibim Kurdistanî. Niha Ewrûpî me, ji min re Başûrî û Bakurî ne girîng e. Ji ber zêdebûna çûnûhatinê û bizava aborî di navbera parçeyên Kurdistanê de, sînor di mejiyê Kurdan de nemane. Di warê çandî û aborî de, sînorên ku dijminan çêkirine, berbi lawaziyê ve diçin. Hatina me jî vê rastiyê îspat dike. Eger ji Başûr hez nekim, ewqasî serdana wê nakim.

**Me bihîst ku te daxwaz kiribû nasname û welatînameyê li Başûrê Kurdistanê werbigirî, rast e?**

Erê ji sala 2007'an ve min hewl da, lê heta niha bi ser neketime.

**Ti projeya te heye da ku li vir niştecih bibî?**

Projeya min ew e ku di nav gelê xwe de bim. Projeya min huner e, dixwazim bi projeya hunerî li vir bicîh bibim.

**Dixwazî li Hewlêrê rûnî?**

Hewlêr be, yan Duhok be, ferqa wan nîne.

**Gava rola kesekî xerîb hebe, Hollandî gazî min dikin**

**Zarokên te razî dibin li vir bijîn?**

Şeş zarokên min hene, hemû mezin in. Keça min a biçûk temenê wê 21 sal in. Dibe ku zarokên min razî nebin herin Bakur, lê Kurdistana azad evîneke zêde li cem wan çêkiriye, pir ji vira hez dikin.

**Te çend berhem ligel Koma Duhokê tomar kir. Dixwazî di pêşerojê de jî bi wan re bixebitî?**

Pir bi dilê min e ligel mamoste Cemal ê serokê Koma Duhokê kar bikim, ew jî dixwaze, lê şiyana darayî pêwîst e. Lê ev şiyana wan tune ku xizmeta min bikin, şiyana min jî tune. Ev 3 sal in min ti albumeke stranan dernexistiye. Dibe ku bêjin berhemên wî nînin, nexêr, ne wisa ye. Niha 24 stranên min amade ne, weke şekirokên di nav kaxezê de, hema veke dixwî. Lê sponsor tune.

**Pêwîst e Hikûmeta Herêma Kurdistanê çi bike di vî warî de?**

Li welatên pir pêşkeftî hunermend gelek daxwazan ji hikûmetê nakin. Li wan welatan dezgeh û sponser gelek in. Çanda reftarkirinê ligel hunerê hatiye çespandin. Tiştê ku sermayedar Hesen Şingalî kir ku bi pereyên xwe festival ji bo hunermend Mihemed Şêxo saz kir, şoreşeke mezin bû. Lê ev ji bo gelên din ne şoreş e, ji ber ev li cem wan bûye kultûr. Dewlemendên Tirk, Ereb û Ewrûpî gava 10 heya ji sedî 20 bacan didin hikûmetê, hema bi xwe jî bacekê ji bo çand û hunerê terxan dikin.

**Şirketa Mîr Muzîk li Ewrûpa heye, ji ber çi ew hevkariya te nakin?**

Ez û ew nebûne hevkarên hevdu, lê di dema xwe de Akademiya Kurdî li Kolnê albumek ji min re çêkir. Heta niha min ti berhemek pêşkêşî Mîr Muzîk nekiriye, ji ber mesrefa berhemanînê naxin situyê xwe, tenê belav dikin. Divê tu bi xwe pereyên studyo û grubên muzîkê bidî wan. Niha bi vî rengî kar dikin.

**Tevî çend fîlmên sînema yên Hollandî bûyî?**

Ez ji sala 1995'an ve ligel Hollandiyan karê sînemayê dikim. Îsal fîlmek ku tevî bûm di sînemayan de tê nîşandan. Rola min rola kesên xerîb û penaber e. Ku roleke wisa dibe gazî min dikin. Di sala 1995'an de min rola serekî di fîlmê 'Ew zarokê ku napeyive' de lîst. Berî du salan tevî fîlmekî Kurdî-Hollandî bûn ku navê wî Şoreş û Şêrîn bû û li ser komkujiya Helebce bû.

**Te stranek li ser komkujiya Helebce gotiye, te Helebce dîtiye?**

Mixabin heta niha min Helebce nedîtiye.

**Ti deman PKK'ê ti straneke min sansûr nekiriye**

**Di destpêkê de te di stranên xwe de behsa serokên Kurd weke Barzanî û Qasimlo dikir, ji ber çi?**

Axir, ew sembolên me ne, ji bo dijminan jî her wisa bûn, loma jî weke mînak dijmin çûn Qasimlo kuştin. Ez strangotina kurdî dûrî siyasetê nabînim. Ew jî karekî siyasî ye, lewra li ser kasêtekê ku min got ne kasêta min e û min kirî ye ez di sala 1976'an de 3 meh û nîv li zindana bajarê Wanê hatim girtin. Strana ku min li ser Qasimlo got, min di wê meşê de çêkir ku bo şermezarkirina terorkirina wî de hat kirin. Eger ez ne siyasî bûma û tevî wan meşan nebûma û li ser maseyê ev stran amade bikira, dibû ewqasî ne bihêz bûna.

**Wê demê tu zêde di medyaya PKK'ê de derdiketî, wan ji te re nedigot di stranên xwe de behsa wan neke?**

Nexêr, qet kesî ev tişt ji min re negotiye. Niha jî ez di kanalên PKK'ê de derdikevim. Carekê di ahengeke Newrozê de, li Swêdê, jineke alîgira PDK'ê hat cem min û dizanibû ez jî ser bîr û rêbaza Barzanî me, ji ber ez endamê KUK'ê bûm, got 'tu her roj diçî kanala PKK'ê, ji te nabêjin bêje 'bijî Apo'? Min got, tu çûyî wira û ev daxwaz ji te kirine, got 'na ez naçim wir', min jî jê re got 'eger ji min re bêjin ez jî naçim.' Ti deman wan ti straneke min sansûr nekirine. Ez gava diçim her kanaleke kurdî, weke kanaleke Kurdistanî lê dinêrim.

**Gava te ligel Koma Berxwedan stran li ser Abdullah Ocalan digotin, ev ji ber ku ew sembolek gelê Kurd e?**

Erê, ji ber ku ew jî serok û semboleke gelê Kurd e. Gava straneké li ser Ocalan an Qasimlo dibêjim, nayê wateya ez li ser bîr û baweriyên wî me, lê weke hunermendekî Kurd peyameke min heye.

**Di navbera Şivan Perwer û PKK'ê de di vê dema dawî de gengeşe derket holê. Tu vê yekê çawa dibînî?**

Ez baş nabînim, ji herdu aliyan. Ji ber ku dema du kevir li berhev dikevin deng ne ji yekê, lê ji herduyan tê. Xeletiya mamoste Şivan ew bû ku xwe kir armanca vî karî. Nabe keda mamoste Şivan bê înkarkirin, gava wî stran digotin em xwendekar bûn. Xeletiya PKK'ê jî ew e ku xwe tîne asta hunermendekî. Pêşî hinek nivîskaran rexne li Şivan girtin, ku hinek dostên wî bûn. Lê piştî ku Şivan vîdyoya xwe ya ku di kanala TRT-6 de belav kir, PKK jî dijî Şivan axivî. Par jî gelek gotin belav bûn ku Şivan diçe TRT-6 û naçe. Di dawî de me dît di festîvala PKK'ê de, li Hannover, derket û me dît çi got. Lê vaye ez 24 sal in li Ewrûpa dijîm, heta niha PKK'ê ez venexwendime festîvalekê. Min ji hevalên PKK'ê re jî got, eger hûn derî li ber hunermendan venekin, ewê herin ber deriyên din. Pir caran me behsa van tiştan kiriye, carina ciwanekî dostê PKK'ê rabûye û bi xirabî behsa Şivan kiriye, min bersiva wî daye, min jê re gotiye eger nûnertiya PKK'ê dikî ev karê te çewt e, eger nakî jî ne karê te ye van gotinan bikî. Ji ber çiqasî hunermendekî mezin bim, tenê kesek im û ji xwe tenê berpirsiyar im, lê partiyek berpirsiya welatekî di situyê wê de ye.

Lê mixabin, hemû partiyên Kurd wisa ne, eger tu xizmeta wan bikî tu baş î, kengî te tembûra xwe hilgirt û got serbixwe me û ji te cuda bim, tu xirab î. Ev hatiye serê min jî, lê dibe ku ji ber ne hunermendekî pir girîng im, kes pê nehesiya.


Wêne: Rûdaw

## "TRT-6 qereqol e"

**Rûdaw: Tu amadeyî herî TRT-6?**

**Birader:** Na.

**Ji ber çi?**

Ez bawer dikim ku TRT-6 bi armancekê ji aliyê Dewleta Tirkiyê hatiye damezrandin. Eger berî 30-50 salan bi rêya ola Îslamê û zimanê tirkî dixwestin Kurdan bihelînin, îro hewl didin bi zimanekî xirab ê kurdî mejiyê Kurdan bihelînin. Ez TRT-6'ê weke dezgeheke dewletê dibînim. Dezgehên dewletê yek jê zindan e, yek jê qereqola polîsan e û yek jê jî dadgeh e. Hunermend nikare here qereqolê li tembûrê bide, hê di roja yekemîn de min got TRT-6 qereqol e. Ev helwêsta min jî ne ji ber helwêsta PKK ya derheqê vê kanalê de ye.

**Kemal Burkay di hevpeyvînekê de dibêje: Gelo eger TRT-6 daxwaz ji Ocalan bike ku here di wê kanalê de biaxive, naçe?**

Eger Ocalan jî here, ez naçim. TRT-6 bi rêya rojnameya Zaman têkilî ligel min çêkir, lê min bi heman awayê niha bersiva wan da. Gotin PKK gefan li te dixwe? Min ji wan re got, ez ne ew hunermend im ku PKK gefan lê bixwe. PKK dizane nêrîn û baweriyên min taybet in bi min, ne malê alîkî ne, ji ber hunermend û xwedî peyam im







# Zarokên Amedê li pê 'Lola Zêrîn' in!

**Alî Guler**

Senaryoya fîlmê derhenêr Miraz Bêzar, 'Min Dît' ji bo xelatên fîlmên Almanya yê bi navê 'Lola Zêrîn' berendam hat nîşandan. Ev xelat, bi organîzeya Akademiya Fîlmên Almanya di 8 Nîsanê de li Berlînê bi şahiyek mezin tê belavkirin.

Bihayê hemû xelatan 2 Milyon û 855 hezar Euro ye û ji bilî 'Min Dît' 36 fîlmên din jî hene. Xelatên yên herî bi prestîj ên Almanya, "Lola Zêrîn" roja 8'ê Nîsanê xwediyên xwe dibîne. Xelatên "Lola Zêrin" jî sala 1951'an vir de tê belevkirin û wek Oskarê Almanyayê jî tê naskirin û fîlmê herî serkevtî bi 500 hezar Euro tê xelatkirin.

Ev çend salên dawî organîzeya vî xelatê Akademiya Fîlmê Almanya dike. Wek hersal îsal jî di nav sedan fîlman de 36 berhem hatin hilbijartin. Di hilbijartina fîlman de senaryo, huner û gelek beşên din hatin nirxandin. Xelat wê bi şahiyeke mezin bên belavkirin û bername wê di kanala ZDF de zindî bê weşandin.

Di nav van fîlman de fîlmê derhenêrê Kurd Miraz Bêzar, "Min Dît" jî bi senaryoya xwe berendam e. Fîlmê derhenêr Andreas Veiel ê li ser dîroka




RAF'ê (Fraksiyona Artêşa Sor) bi navê "Em Nebin Kî" û fîlmê Yasemin Samandereli, "Almanya- Wilkommen in Deutschland" ( Hûn Bi Xêr Hatin Almanya) jî berendam in. Îsal jî wezerata Çandê ya Almanya ji bo xelatan bi giştî 2.855 milyon Euro pere veqetand. Fîlmê yekemîn 500 hezar, yê duyemin 300 û yê sêyemîn jî 250 hezar Euro xelat distîne.

### Çîroka şerê qirêj: Min Dît

Bêzar di fîlm de bandora şerê qiraj û hovîtiya dewleta Tirk nîşan dide. Çîroka fîlm rojnemevana Kurd a sala borî ji ber nexweşiya penceşêrê jiyana xwe ji dest da, Evrim Alataş û Miraz Bêzar nivîsandin. Fîlm, heta niha tevlî festîvalên Stenbol, Antalya, Hamburg û San Sebastianê bû û gelak xelatan bidestxist.


Swêd


Ukrayna


Silêmanî

# Newroz li Stockholmê jî hat pîrozkirin

Di pîrozbahiya Newroza 2011'an li Stockholmê de Kurd û siyasetmedarên Swêdî gihiştin hev. Di şahiya ku ji aliyê Federasyona Komeleyên Kurdistanê li Swêdê (FKKS) di 26'ê Adara 2011'an de li Stockholmê hat lidarxistin, nûnerên Partiyên Swêdî ji amade bû. Kes û partiyên ku tevlî pîrozbahiyê bûn:

Ji Partiya Çep (V) Jacob Jonsson, ji Partiya Muhafezekar (M) Rebuar Fredon û ji Partiya Liberal a Gel (Fp) Fredrik Malm. Dosta Kurdan û seroka berê ya Partiya Sosyaldemokratan Mona Sahlîn jî yek jî mevanê şeva Newrozê bû. Şahiya ku li Solnahallen a li bajarê Stockholmê lidarket, bi beşdariya koma govendê ya KOMCIWAN û Koma Folklora Helperkê hat pîrozkirin. Hunermendên ji çar parçeyên Kurdistanê jî di şahiyê de amade bûn: Nasir Rezazî (Rojhilat), Muhamed Taha Akreyî (Başûr), Mahmud Ezîz(Rojava) û Helîn (Bakur).


Swêd

**Seroka Partiya Sosyal Demokratan, Mona Sahlîn, jî di şahiya Newrozê ya li Stockholmê de amade bû**

# Kerem piştî du mehan giha malbata xwe

Malbata Yalçin dev ji rêyên yasayî bernedan û piştî û du mehan zarokên xwe yê yek salî ji malbatek biyanî girtîn û anîn malê.



Wêne: Rûdaw

Filiz û Faysal Yalçin kurê xwe yê biçûk Kerem anîn malê û hesreta du mehan derbas kirin

Mehmet Sebatli Bochum

Xebat û helwestên malbata Yalçin encamek erênî dan û zarokên xwe yê yek salî bi biryara dadgehê anîn malê.

Li Almanya, li bajarê Bochumê kurê malbata Yalçin ê yek salî Kerem, hefteyek beriya sersalê dema ku li malê dileyîst, ketibû erdê û jixwe ve çûbû û malbatê wî rakiribû Klînîka Zanîngeha Essenê. Li klînîkê bijîşkê ku bi Kerem re mijûl bû, Dr. Kamphausen raporek amade kiribû û tê de gotibû ku Kerem bixwe neketiye erdê, lê kesek lê xistiye û wî birîndar kiriye. Dr Thomas Kamphausen hem Jugendamtê, dozgeriyê û hem jî polîs agahdar kiribû. Li ser vê raporê bi biryara Jugendamta Bochumê polîs roja 26'ê Çileyê Kerem ji nexweşxaneyê derxistibû û biribû dabû malbateke Alman. Bavê Kerem, Faysal û diya wî Filiz Yalçin jî ji ew roj pê de ketin hewldanan ku zarokê xwe şûn de bistînin.

### Faysal Yalçin: Min sê parêzer guhertin

Malbata Yalçin ji bo ku zarokê xwe dîsa bînin mala xwe bi rêya dadê ketin hewldanan. Faysal Yalçin ji aliyekî ve li doktorek serbixwe digeriya ku raporeke nû amade bike da ku rapora Kamphausen pûç bike û ji aliyê din ve bi çendîn parêzeran re kete têkiliyê. "Herdu parêzerên pêşî gotin ku ev doz jiber ku a zarokan e dibe ku 8 an 10 meh, belkî salek zêde bajo. Lê ti sebra min tunebû ku ez ew qas bisekinim. Zarokê min biçûk bû û me zanibû ku em mafdar in û wê zarokê xwe dîsa karibin bînin malê." Faysal Yalçin diçe li Sauerlandê parezerek jin a bi navê Vera von Amel digire û ji bo doza kurê xwe yê yek salî pê re peyman îmze dike. "Ev parêzer ne tenê zîrek derket, herwiha pir jî lezgîn bi çalak xebitî. Ew êvara ku Kerem li malê ket erdê, ew roj sibehê jiber kuxika bê navber û sermayê me Kerem bir doktorê zarokan. Çavê wî sor bûbun û xwîn ketibûyê. Doktor ev tişt li cem xwe rapor kiribû. Parêzera me jî ev rapor roja 24'ê Adarê pêşkêşî dadgehê kir û dadwer jî bawer kir ku Kerem beriya ketinê jî nexweş bû."

### Dadgeh biryara erênî dide

Parêzer Von Amel herwiha ji doktorê malê û mamosteyên zarokên wan ên din derbarê nêzîkatiya Malbata Yalçin de raporên erênî distîne û dide dadgehê. Faysal Yalçin balê dikişîne ser wê yekê ku helwesta Dr. Kamphausen a di dadgehê de pir nerm û erênî bû. "Hinek jî jiber nermbûna wî û jiber ti astengiyek dernexist dadgehê biryarê da ku em Kerem karibîn bînin mala xwe." Malbata Yalçin piştî du mehan roja 26'ê Adarê Kerem ji malbata Alman digrin û tînin mal.

Faysal Yalçin dide zanîn ku piştî hatina Kerem atmosfera mala wan guherî û xemgîniya du mehan bi carekî ve bi dawî bû. Dayika Kerem, Filiz Yalçin jî dawiya bal dikişîne ser rewşa Kerem û dibêje: "Niha pir bi kêf e, dileyîze, dikene û xwarinê dixwe. Demal i mala din bû hertim rûyê wî sor dibû û nedikeniya." Faysal Yalçin derbarê pêşeroja yasayî de jî dibêje ku her çiqas pêvajoya dadgehê bi dawî bibe jî, dosye hîn nehatiye girtin û Jugendamt a Bochumê wê heta demekê rewşa Kerem bişopîne û ji bo alîkariya psikolojîk wê pedagogek jin heftê du saetan were mal û pê re mijûl bibe.



Wêne: Rûdaw

Serokê Komela Pizîşkên Kurd, Dr Rasoul Fakî

# Pizîşkên Kurd û Alman Newroz pîroz kirin

Li Berlinê bi mabesta pîrozbahiya cejna Newrozê bijîşkên Kurd û Alman di resepsiyonekê de hatin cem hev û hevdu nas kirin.

Alan Ken Berlîn

Komela Pizîşkên Kurd li Almanya, bi mebesta pîrozkirina cejna Newrozê dawiya heftê li Berlînê resepsiyonek li dar xist. Gelek kesên biyanî jî di resepsiyonê de amade bûn.

Resepsiyona ku ji aliyê Komela Pizîşkên Kurd li Almanya ve hatibû organîzekirin li şaredariya navçeya navendî ya Charlottenburg- Wilmersdorf hat pîrozkirin. Seroka şaredariyê Monika Thiemen û Serokê Yekîtiya Pizîşkên Berlinê Gunther Jonîtz û gelek kesên navdar jî amade bûn. Di pîrozbahiyê de li ser dîrok û wateya Newrozê hat axafin û cejna gelê Kurd û herême hat pîrozkirin.

Seroka şaredariyê Monika Thiemen di axaftina xwe de got ew gelek kêfxweş e ku mêvandariyê dike û wiha dom kir: "Ez hêvî dikim Newroz bibe mebasta aştî û wekheviyê." Serokê Komela Pizîşkên Kurd li Almanya Dr. Rasuol Fakî jî axifî û got: "Em 8 sal in Newrozê bi vî awayî pîroz dikin. Armanca me ew e ku em cejn û kultura gelê xwe bi rêya resepsiyonên wisa bi biyaniyan bidin nasandin." Dr. Rasuol, di berdewamiya axaftina xwe de bal kişand ser rejîmê wek Sûriye, Îran û Tirkiye û wan bi zimanekî tûnd rexne kir û wiha got: "Bila ev rejim dest ji zilm û zordariyê berdin. Mafê gelê Kurd ên demokratîk nas bikin. Eger wiha berdewam bikin wê ew jî bibin wek Misir, Tunis û Lîbya. Gelê Kurd jî ji her demê zêdetir xwediyê firsetê ye. Bila di nav xwe de yekîtiyê çêkin û mafê xwe bigrin." Piştî axaftinan hunermend Demokrat Taha derket ser dikê û bi kemançeya xwe konserek klasîk da û paşê mêvanan xwarinên kurdî xwarin

# Nemir 18 salan winda ye

▶Roja ku winda bû hê 11 salî bû.

▶Cara dawîn wî li ser rêya 'hevalê wî' dibînin.

▶Tevî ku 18 sal derbas bûye, malbatê hê hêviya xwe qut nekiriye û li benda dîtina Nemir e.



**Azad Dicle** Koln

Rojek yekşemê ya ronak bû û Nemirê 11 salî berê xwe da cem hevalê xwe. Li gor agahiyên polîsên Alman hevalê Nemir wê rojê ne li mal bû û cara dawî Nemir li ser rêya resmî ya taxa Buir ya bajarê Kerpen li nêzîka Kolnê hat dîtin. Piştî wê Nemir bi yekcarî winda bû. Ew roj 16'ê Gulan a 1993'an bû û wê demê Nemir 11 sali bû. Çi bi Nemir hat, gelo Nemir ket erebeya kesekî nenas? Li gor jinbira Nemir, Aysel, ku agahî dan Rûdawê, Nemir lawikekî feyîdok bû û zûbizû nêzîkî kesên nenas nedibû. Malbata Nemir şikê ji "hevalekî" Nemir û ji keşeyeke jin dikin.

Malbata Nemir ji Bakurê Kurdistanê, ji gundê Kefnasê yê ser bi Midyadê ye û malbatek Êzîdî ye. Malbat ev 24 sal in li Almanyayê dijî û 3 bira û 4 xwuşkên Nemir hene. Navê Nemir ê fermî Emîn e, ji ber ku wê demê navên kurdî li Tirkiyê qedexe bûn.

Jinbira Nemir, Aysel, dibêje ku Nemir lawikekî feyîdok bû, bi her kesî re nediçû. Birayê wê Ekrem lê zêde dike û dibeje ku "Nemir rûbiken bû û gelekî jîr bû, zû têdigihişt. Belê feyidok bû, lê dema kesek baş nas dikir, gelekî bi germî berê xwe didayê." Beriya ku Nemir winda bibe bi çend rojan, carekê saetek û carekê jî 5 Mark bi xwe re anîn malê. Dê û bavê Nemir pirsîn ka ev saet û pere ji ku anîne, Nemir jî got ku "hevalê" wî ew tişt dane wî. Li ser vê yekê dê û bavên Nemir ketin şikê û xwestin hevalê Nemir nas bikin. Hevalê Nemir wê roja yekşême, di roja windabûna Nemir de, di saet 14'an de, bihata mala Nemir û xwe bi dê û bavên Nemir bidaya naskirin.

### Hevalê Nemir kesekî 40 salî bû

Roja ku Nemir winda bû, dayîka wî ne li mal bû, ew çûbû şahiya mirovekî xwe. Nemir, hinek xwuşk û birayên xwe û bavê xwe tenê li malê bûn. Piştî ku saet bû 14 û hevalê Nemir nehat, Nemir jî ji bavê xwe re got "ezê herim cem hevalê xwe" û derket. Û Nemir carek din venegeriya. Birayê Nemir, Ekrem, dibêje: "Zilamekî Alman ê derdora 30 salî got ku wî Nemir li ser rêya 'hevalê' wî dit. Lê ew kes bi xwe jî kesekî wekî ku destdirêjiya zarokan dikir, dihat naskirin. Jixwe ji hevalê Nemir bêtir şika polîsan çû ser vî kesî. Paşê vî kesî ji gundê me bar kir û çû cihekî din."

Li gor Aysel, "hevalê" Nemir jî mêrekî Alman ê wê demê derdora 40 salî bû ku navê wî S. bû: "Ew mêrikê Alman wê demê ji zindanê derketibû, yek ji wan kesên bi deq bû, ne kesekî baş bû, ji ber gelek kiryarên xirab ew gelek salan di zindanê de mabû, belkî piraniya temenê xwe jî." Lê dilê malbatê ne tenê li S. yê 40 salî xerab dibe, ew bawer dikin ku destê keşeyeke jin a Dêra Evangelan jî di windabûna Nemir de hebe, weke ku Ekrem behs dike: "Wê jinika keşe zilamê bi navê S. hewandibû ba xwe û li ba xwe dixebitand û dilê malbata me li wê û S. xerab dibe ku wan tiştek bi Nemir kiribe. Ji xwe piştî windabûna Nemir, jinika keşe û S. mala xwe guhertin û ji taxa me bar kirin."

**Hevalê Nemir kesekî 40 salî bû û her derê wî deq bû û weke kesekî ku destdirêjiya zarokan dikir, dihat nasîn**

Li ser vê şika malbatê berdevkê polisên bajarê Hurthê Jörg Leinen got ku ew her li ser vê bûyerê radiwestin û eger agahiyên nû bikevin destên wan, ew ê lekolînên xwe dîsa bidin destpêkirin, lê berdevkê polîsan nikarîbû piştrast bike ku lekolîn derbarê wan kesên ku şika malbatê derbarê wan de heye, didomin û bal kişand ser bernameyeke ku di televizyona almanî ZDF de hat weşandin û hêviya xwe anî ziman ku piştî bernameyê agahiyên nû ji wan re werin.

### Ji sala 2004 ve dosya cemidandî ye

Tevî ku 18 sal di ser windabûna Nemir de derbas bûne, lê malbatê heviyên xwe qut nekirine û hewl dide aqûbeta lawê xwe ronî bike. Ji bo vê yekê birayê Nemir, Ekrem, di Kanûna sala borî de dîsa serî li parêzerekî da û dosya Nemir dîsa vekir, Ekrem wiha dibeje: "Me berê xwe da dosyê, lê me dît ku ji sala 2004'an û şûnde tiştek nehatiye kirin, vê yekê gelekî em êşandin." Lê piştî ku parêzerê malbatê dîsa ket dewrê, polîs jî dîsa çalak bûn û di dawiya Çile 2011'an de telefonî mala dêbavên Nemir kirin û gotin ku televizyona almanî ZDF dixwaze derbarê Nemir de dosyakê amade bike.

**Roja 30.03.2011 serpêhatiya Nemir di televizyona almanî ya fermî ZDF, di bernameya "Aktenzeichen XY", de jî bû mijar. Di vê bernameyê de bûyerên neron derbarê kuştina kesan tê nîşandan, bi heviya ku temaşevan agahiyan derbarê kujeran de bidin polîsên alman. Ev bernameya Çarşema borî taybetî li ser zarokên windabûyî bû.**

### Telefonek bi hêvî

Çend salan piştî windabûna Nemir, telefona jineke alman dîsa hêvî da malbatê, lê hêviya wan zêde dom nekir, weke ku Ekrem behs dike: "Jinike alman li me geriya û got ku ew dizane lawê me li ku ye û pere xwestin, lê paşê derket ku jinikê tenê dixwest me bixapîne û pereyên me bixwê. Lê jinik hat binçavkirin û 7 sal cezayê zindanê xwar." Dîsa beriya 3-4 salan polîsên Frankfurtê telefonî malbatê kir û gotin ku wan Nemir dîtiye: "Bi rastî wêneyê ku polîsan ji me re şandin dişiba Nemir, heta DNA ya malbatê û lawik jî dan ber hev û em çûn Frankfurtê jî, lê ne Nemir bû" Ekrem dibeje.

Windabûna Nemir û bêbaweriya bi dîtina kesên ku destê wan di windakirina lawik de heye, wiha kiriye ku dayika Nemir, Ferîda, serî li gelek rêyan bide. Jinbira Nemir, Aysel wiha behsa hestên dayîka Nemir, Ferîda kir: "Zilêm lawê min bir û lawik sax e. Eger kuştî bûye, meyê termê wi ditîba." Aysel got ku ji dema windabûna Nemir, polîs li cihên bi şik yên li derdora gundê wan dikolin û li Nemir digerin, lê heta niha jî tiştek nedîtine. Li ser pirsa, eger lawik sax bûye, çima heta niha nehatiye dîtin, an jî deng jê derneketiye, Aysel dibêje ku şika malbatê ew e ku lawik ne li Almanyayê ye û ew birine derveyî Almanyayê. Ferîda jî bawer dike ku lawê wê birine derveyî Almanyayê: "Lawê min firotine!" Lê dayîka Nemir 18 salan piştî windabûna lawê xwe hîn jî hêviyên xwe qut nekirine û çaverêye ku rojekê lawê wê yê niha 29 salî bide devê derî. Aysel wiha behsa heviyên xwesuya xwe Ferîda dike: "Xwesuya min Ferîda çûye cem gelek faldaran û wan jî jê re gotine ku Nemir sax e, lê nikare were. Bi rastî baweriya me bi gotinên faldaran nayê, lê em jî bawer dikin ku Nemir sax e."

## Kurdên Munixê bûn mijara fîlmekî dokumenter



Hawirê Zengene û Sebrî Sindî

**Munix (Rûdaw) -** Di roja 20'ê Adarê de li bajarê Munixê di sînemaya Arena de bi navê "Rojîn û stêrkên Munixê" fîlmekî dokumenter hat nîşandan.

Senaryo û derhênerê film Hawirê Zengene û hevkarê wî Sebrî Sindî ji Rûdawê re ragihandin ku ew filmê dokumentarî yekem film e ku jiyana Kurdên vî bajarî dike film û heta niha li ser Kurdên Munixê ti film nehatiye çêkirin. Zengene got, "Di film de ez dixwazim nîşan bidim ku ji bo kesatiya zarokên Kurd û ji bo fêrbûna zimanê kurdî bi metodên hunerî û pedogojî rêyên baştir hene."

Rojîn li Munixê navê komela dibistanî ya kurdî ye û stêrkên Munixê jî zarokên Kurdan ên li Mûne ji dayik bûne.

Berpirsiyarê Komela Rojîn, Faxir Sindî jî got armanca wan ew e ku zarokên Kurd zimanê xwe yê zikmakî ji bîr nekin û bi rêbazên nû fêr bibin.

Seroka berê ya Dadgeha Destûra Bingehîn û Seroka berê ya Enstîtuya Goethe Jutta Limbach (77) jî di fîlm de derdikeve û wiha dibêje: "Zarok bê zimanê zikmakî kesayetiya xwe winda dikin û bê fêrbûna zimanê zikmakî rewşa wan a geşbûn û pêşveçûnê têkdiçe. Psîklojiya wan a civakî tê xerakirin. Metoda bi duzimanî ji bo zarokên Kurdan, ango fêrbûna kurdî û almanî ez bi xwe pir rast dibînim."



# Li Kurdistanê dibe pirsgirêk, Li Ewrûpa dibe mijara lêkolînê




▶Derbarê bikaranîna telefonên mobîl de li Herêma Kurdistanê anketek hat kirin.

▶Encamên anketê hatin weşandin û gelek pirsgirêkên civakî derdixin holê.

**Koln (Rûdaw) -** Li gor lêkolînek herî nû ku li ser bikaranîna mobîl a di civaka Kurdan de û bi rêya anketekê hatiye encamdan, derdikeve holê ku bi baweriya ji sedî 91'ê kesên tevlî anketê bûyîn, mobîl pirsgirêkên civakî derxistiye. Herwiha ji sedî 41 jî di wê baweriyê de ne ku mobîl sinorê wan ê taybet yan jî kesek nêzî wan derbaz kiriye. Herwiha bi baweriya ji sedî 55'ê kesên ku beşdar bûne, ji bo kêmkirina vê fenomenê hikûmet ne di asta berpirsyartiyê de ye.

Ev lêkolîn bi navnîşana "Di civaka Kurdan de exlaqê karanîna madeyan, wek nimûne mobîl" li Hewlêrê bi awayek meydanî hatiye kirin. Ev lêkolîn bi serpereştiya pisporê civakî Îllya Fîvroys Konenef û amadekariya xwendekarê doktorayê Zîrek Ebdûllah ve li zanîngeha Loganskiya Nîştîmanî ya li Ukrayna hatiye amadekirin. Wê ew lêkolîn di demek nêzîk de di govara civakî ya li Ukrayna bi zimanê Ukranî bê belavkirin.

Anket navbera Gulan a-2010 û Sibat a 2011'an li Hewlêrê hatiye encamdan. Ji sedî 77'ê kesên beşdar bûne, temenê wan navbera 19-28 salî de bû. Ji sedî 50'ê beşdarbûyan jin û nîva din jî mêr bû.

Di wê lêkolînê de ji sedî 100'ê kesên beşdar bûyîn, mobîl wekî amêrek pêwîst û girîng dibînin. Herwiha hemû beşdarvanan jî gotin ku mobîlê bikartînin. Di vê lêkolînê de bi baweriya ji sedê 76'an di civaka Kurdan de mobîl amêrek maddeyî ya nû ye û ji sedî 11 jî dibêjin, ne nû ye.

### Gelo li Kurdistanê mobîl bi awayek tendirûst tê bikaranîn?

Lêkolînvan di wê lêkolînê de gihane çend encaman û ji wan jî; ji sedî 39'ê beşdarbûyan di wê baweriyê de ne mobîl bi awayek bi tendirûst nayê bikaranîn û ji sedî 52 jî dibêjin, heta radeyekê bi awayek bi tendirûst tê bikaranîn.

Herwiha ji sedî 73'ê beşdarbûyan tenê xetek mobîlê bikartînin, ji sedî 20 du xetan, ji sedî 7'ê wan sê sîmkart û ber bi jor ve hene.

Lêkolînvan di encama lêkolîna xwe de gihaye wê encamê ku mobîl pirsgirêkên civakî derdixe: "Dibe ku ev ne bersivek rast be yan jî bi hinek awayan agahdarî ji pirsgirêk û bûyerên civakî yên Kurdî nebin. Ji ber di piraniya mal, civîn û semîneran de û herwiha di piraniya kanalên ragihandinê de behsa wê fenomenê tê kirin."

Herwiha di wê lêkolînê de ji sedî 41'ê kesên tevlî anketê bûyîn dibêjin: "Bi mobîlê sinorê min ê taybet yan jî kesek nêzî min hatiye derbazkirin." Bi baweriya lêkolînvan; "Ew rêje balê dikişîne ser mezinahiya fenomen û metirsiyên di derketina pirsgirêkên civakî yên navbera ferdên civakê de."

Herwiha ji sedî 75.60'ê beşdarbûyên ku mobîl li beramberî wan yan jî kesek nêzî wan xirab hatî karanîn, dibêjin; 'Kur'an bikaranîne. Ji sedî 21.95'ê wan jî dibêjin 'Keç'an bikaranîne.

Di wê lêkolînê de ji sedî 26.95'ê kesên beşdarbûyîn di wê baweriyê de ne xirab bikaranîna mobîlê ji bo armancên civakî ye. Ji sedî 29.56'ê wan jî di wê baweriyê de ne armanc şikandina kesayetiya mirov e, ji sedî 27.82 bi armanca çêkirina têkiliyên civakî ye û ji sedî 4.34'ê wan jî bi armancên siyasî ne.

Zîrek Ebdûllah derbarê encama wê pirsê de dibêje: "Ev hersê sedem, sedemên herî giring ên vê pirsgirêkêne, bi radeyek zêde asta rewşenbîriya civakî ya ferdên civaka Kurd nîşan dide. Li vê derê têkiliyek xurt navbera exlaqê bikaranîna madde û rewşenbîriya civakî de derdikeve. Ji ber rewşenbîriya civakî ya ferd, reftar pêşkêş dike û bikaranîna meteryal bi xwe jî reftarê civakî ye. Pêdiviya vê jî bi exlaqê civakî heye, ji ber bikaranîna meteryal hem pêwîstî bi exlaq û hem jî bi rewşenbîriyê heye."

### Şîrketên mobîlan û hikûmet xemsar in

Bi baweriya ji sedî 72'ê beşdarbûyan şîrketên mobîlan ên wekî Korek û Assiacell, li beramberî wê fenomenê pengavên erênî ne avêtine û ji sedî 28 jî dibêjin, pêngav avêtine.

Kesên dibêjin şîrketên mobîlan gavên erênî navêtîne, ji sedî 68'ê wan sedema wê yekê vedigêrin ku ev şîrket tenê giringiyê didin bidestxistina pereyan. Ji sedî 18.75'ê wan jî sedema wê ji bo nebûna çavdêriya li ser xetên telefonê vedigerînin. Ji sedî 1.25 jî dibêjin, pirsgirêkên bi vî awayî ti têkilî bi wan ve nîne. Zîrek Ebdûllah derbarê sedema yekemîn de dibêje: "Ev yek pirsê li exlaqê karkirinê dike. Gelo pereyê şîrketan ji hestê mirovan girîngtir e?"

### Çareserî çi ye?

Ji sedî 60.17'ê kesên ku tevlî vê anketê bûyîn di wê baweriyê de ne ku ji bo kêmkirina vê fenomenê pêwîst e yasa bên derxistin, ji bo kesên mobîlê xirab bikartînin girtin û cezakirina zêde bê derxistin. Bi baweriya ji sedî 38.05'an jî pêwîst e asta rewşenbîrî û hişyariya ferdên civakê bê bilindkirin û bi baweriya ji sedî 1.76'ê din jî pêwîstî bi rêyên din heye.

Bi nêrîna Zîrek Ebdûllah; "Ji bo kêmkirina vê fenomenê, rêya herî baş cezakirina darayî û bilindkirina asta rewşenbîriya ferd e."

---

Barzan Mihemed Hewlêr

# Li Kurdistanê robyan û kevjalxwer jî peydabûn

Li derdora mêzeyê qerebalixek zêde hebû, goştê robyan, kêvjal, heştpê (axtepût) û stêrên deryayê li ser hatibûn danîn. Hinekan tenê temaşeyî goştê wan dikir. Li kêlekê yek ji kiryaran daxwaza kîloyek goştê ji wî cûrê dikir. Kêvjalxwerek Kurd ê ji bo kirîna kêvjalan hatibû, digot: "Ez hinek caran kêvjalan bi xav dixwim."

Berê xelkê Kurdistanê tenê di televizyonan de didîtin ku Ewrûpî, Amerîkî yan jî hevwelatiyek ê Rojhilatê Asya goştê kêvjal, robyan, heştpê û stêra deryayê bixwe. Lê niha ew cûrê goştan li Kurdistanê dikeve destê mirovan û bûye tama xwarina hinek hevwelatiyên Kurd jî, bi taybet jî yên demekê li Ewrûpa mayîn.

Ev cûrê goştên bi vî awayî zêdetir li supermarket û dikanên mezin tên dîtin, lê piraniya kesên dikirin biyanî ne. Bi taybet jî hevwelatiyên Çînî, Koreyî û Filîpînî yên ji bo xebitînê hatîn Kurdistanê.



### Bihayê van cureyên goşt bilind e

Bedredîn Welî (40) li Majide Mall firoşyarê wan goştan e û dibêje: "Rojên înêyan bazara van goştan germ e. Ji ber ku wê rojê bêhndana Koreyî, Çînî û Filîpîniyan e û ji bo kirîna wî goştî tên. Ez rojane di nav hev de zêdetirî 10 kîlo goştê bi wî awayî difiroşim, lê zêdetir goştê kevjalan tê firotin. Hinek rojan em 30 kg difiroşin." Bedredîn wiha pêdeçû: "Kurd tenê goştê robyan û kêvjalan dixwin."

Bihayê hinek ji wan goştan ji yê mî, bizin û çêlan girantir e. 1 kg robyan bi 35 hezar dînarî ye. Kîloya heştpêyan bi 32 hezar dînarî ye (20 Euro) û stêra deryayê jî bi 10 hezar dînar e (6 Euro). Goştê herî erzan jî yê kêvjalan e û kîloya wê bi 8 hezar dînarî ye (5 Euro).

> **Firoşyarek goşt: Gelek caran hinek Kurd daxwaza goştê tîmsehan dikin**

Bedredîn derbarê çavkaniya wî goştî ve jî dibêje: "Kêvjal, robyan û stêra deryayê ji Besra tên anîn û heştpê jî ji Tirkiyê tên." Navbirî wiha got: "Kurd gelek caran pirsa goştê tîmsehan dikin, lê me nîne."

Niyaz Mihemed (34) nêzî 10 salan li Birîtanya jiyaye, li wê derê gelek caran goştê kevjal û robyan xwariye; "Li Birîtanya piraniya rojên înêyan min ew goşt dikirî û dixwar. Hinek caran ez diçûm resturantan û hinek caran jî min li mal amade dikir. Lê heta niha min heştpê û stêrên deryayê nexwariye."

### Goştê ajalên avî bo tendirûstiyê baş e

Niyaz dibêje ku wî ji bijîjkan pirsiye, gotine ku ev cûrê xwarinan pêşiyê li pêşveçûna penceşêrê digirin."

Pisporên tendirûstiyê balê dikişînin ser wê yekê ku goştê ajalên avî, ji bo tendirûstiya mirovan bi sûd in. Bi taybet jî robyan, mirov ji tûşbûna nexweşiya penceşêrê diparêze. Ji ber hebûna omega-3 a ku kontrola werimînê dike û parastina xwîna bi êş dike.

Pisporê nexweşiyên girê û penceşêrê Dr. Cengî Saleyî derbarê xwarina ajalên avî ve dibêje: "Bi awayek giştî xwarina goştê avî ji goştê li ser hişkahiyan pir baştir e, ji ber rêjeya rûn kêmtir di nav de heye."

# Du tîmên Amedê dikevin heman lîgê

Ferdi Çelik futbolvanekî Kurdê niustecihê Almanya ye û niha di Tîma Diskisporê de dileyîze. Ew bi bawer e ku tîma wan îsal derbasî liga 2'mîn bibe û dibe ku Diyarbakirspor ji lîgê bikeve û herdu tîm rastê hev bên.


Ferdi Çelik futbolvanekî Kurd e û niha li Amedê dileyîze

**Azad Dîcle** Hagen

Li Amedê piştî Diyarbakirsporê tîma duyem a Diskispor e, ango Tîma Şaredariya Mezin A Amedê. Ji 25 futbolvanên vê tîmê 20 Kurd in û yek ji wan jî Ferdi Çelik e. Çelik li Almanya dest bi futbolê kiriye û pistî di çendîn tîmên Alman û Tirk de leyîst, di Sibata 2011'an d transferê Diskisporê bû. Peymana Çelik bi Diskisporê re heta dawiya vê sezonê ye, ango heta 31'ê Gulanê, lê ew ê peyman dirêj bike, "Eger Diskispor derbasî lîga duyem bibe."

Li Amedê ne tenê Diyabakispor heye. Diyarbakirspor a ku sala borî ji Lîga Super daket Lîga Bank Asya (Li gor Federsyona Tirkiyê Lîga Yekem) niha di dîroka xwe de rastî sezona herî xirab hatiye û wê cara yekem dakeve lîga 2'min. Li Amedê ji lîgeke jêr jî tîmeke din hewl dide xwe ku derbsî lîga 2'mîn bibe. Ev jî tîma ku di raya giştî de wek Tîma Şaredariya Mezin A Amedê tê nasîn, Diskispor e. Li gor Diyarbakirsporê ev tîm bêhtir wek tîmeke Kurdî tê nasîn û ji 25 futbolvanên wê 20 kes Kurd in û gelek ji wan jî Amedî ne. Futbolvanê Kurd Ferd Çelik ku heta niha di lîgên Almanya yên herêmî û lîgên Tirkiyê de leyîst, ev du meh in di Diskisporê de dileyîze. Ferdî li navenda sahê li milê rastê dileyîze û carna jî wek forvet forme lixwe dike.

Ferdi Çelik (26) ji ber ku hevwelatiyê Almanya ye 6 mehan carekê tê Almanya, bajarê Hagenê û dîsa vedigere Tirkiyê. Di vegra vê carê de Çelik bi Rûdawê re axivî û behsa jiyana xwe ya futbolê û rewşa Diskisporê kir. Ew di sala 2005'an ve di tîma SSV Hagen de dest bi futbolê kir û heta îro bê navber futbol dileyîze.

Çelik niha bi rewşa Diskisporê şanaz e û wiha dibêje: "Dema ku mirov di tîmekê de dileyîze û ew tîm ew sezon bi serdikeve, herwiha futbolvan jî pê re serdikevin û rûmeta wan zêde dibe. Wê tîma me îsal derbasî Lîga 2'min bibe, jiber ku gelek mesref hatine kirin, gelek hewldan hatine meşandin û hemû lîstikvanan vê yekê ji xwe re kirine armanc. Me wisa lihev kiriye ku eger Diskispor derbasî lîga 2'mîn bibe wê peymana min dirêj bibe."

Çelik bi dil bawer dike ku Diskispor derbasî lîga 2'min bibe û Diyarbakirspor jî dakeve wê lîgê. "Dibe ku di sezona bê de du tîmên Amedê di heman lîgê de cîh bigrin û bi hev re bileyîzin. Lê wê federasyon biryar bide kîja tîm di kîjan grûbê de cih bigre." Jiber ku lîgên 2 û 3'min wek Grûba Sor û Grûba Spî, du grûb tên veqetandin. "Em di Grûba Spî de cîh digrin."

**Ferdî Çelik (2005-2011):** (2005) SSV Hagen, Borussia Monchengladbach II, Gaziantep Buyukşehir Belediyespor, Hammer SpVg, Rot Weiss Ahlen II, Hammer SpVg (careke din), Rot Weiss Ahlen II, Erzincanspor, Goztepe Îzmir, Akcaabat Sebatspor, Diskispor (2011)



# Qeter ewrên destçêkirî çêdike



**Elaph (Rûdaw) –** Ji zanîngeha Qeterê çend rayedaran ragehandin ku wan ji bo ewrên destçêkirî da ku stadyuman di dema lîstikên kûpa cîhanê di sala 2022'an de hînik bikin, awayek dîtine.

Germa zêde ya di rojên havînê de li Qeterê, li cem yarîzan û fanatîkan dilgiraniyê çêdike. Pileya germê li wir di Hezîran û Tîrmehê de digihe 50 santîgratan.

Dawiya par, Qeter mêvandariya şampiyoniya kûpa cîhanê ya futbolê ya sala 2022'an bidestxist. Serokê Yekîtiya Cîhanî ya FIFA Sip Platter ragehand ku ew texmîn dike kûpa di demsala zivistanê de û ne di havînê de, bê kirin.

Lê Qeter plana wê yekê datîne ku bi bikaranîna enerjiya tavê stadyuman hînik bihêle, niha li gor zanayan dikarin sûdê ji ewrên destçêkirî werbigirin ku çêkirina her ewrekê nîv milyon doleran dixwaze.

Seroka Beşa Endazeya Mekanîk û Pîşesaziyê Sûad Ebdulxenî derbarê ewrên destçêkirî de got: "Ewr ji heykelekî sivik ê karbonê pêk tên, ku bergekî mezin ê madeyekê hildigirin ku gaza helium tê de heye." Herwiha çar dînamo jî ku bi enerjiya tavê kar dikin, bi kontrol van heykelan dilivînin."

Serokê Yekîtiya Futbolê ya Asya Mihemed Bin Humam, ku bi xwe xelkê Qeterê ye, got welatî wî di amadebaşiyê de ye bo rûbirûbûna germa havînê.

Bin Humam bi niyet e di Hezîrana bê de li ser postê serokayetiya FIFA rikeberiya Platter bike.

Lê Sendîkaya yarîzanên `Fifbiro` piştgiriya birêveçûna lîstikan di demsala çile de kir û got, "Şert û mercên Qeter ji bo şampiyoniya kûpa cîhanê baş in."

## Ahmet Dere

# Serhildanên Newrozê



Newroza 2011'an ji hemû salên borî cudatir derbas bû. Li her çar parçeyên Kurdistanê û herwiha li diyasporayê Cejna Gelê Kurd bi şêwekê neteweyî hate pîrozkirin. Ji bo ti gelî pîrozkirina Cejna Neteweyî weke serkeftinekê nayê dîtin, lê belê ji bo Kurdan ev mijar xwediyê wateyeke cuda ye. Qedexekirina Newrozê bûye sedemê ku gelê me vê cejnê bike pêngava serhildanê. Dema ku rewş wisa be, bêguman gêşbûna cejnê weke serkeftin tê dîtin. Lewre, bi taybetî ji salên 2000'an vir ve û li Bakurê Kurdistanê, Newroz weke roja serhildanê û roja daxwaza azadiyê û demokrasiyê tê nirxandin.

Li gorî cur be cur derdoran, tenê li Bakurê Kurdistanê, tevlêbûna li Cejnên Newrozê ji 3 mîlyonan zêdetir bûye. Ev hejmar ne biçûk e, ew bi tena serê xwe qasê hêza şoreşekê ye. Eger li welatekî din bûyerekê wisa qewimî ba, wê di çapemeniya cîhanê de cihekê fireh girtiba. Lê mixabin, dema mijar dibe Kurd û Pirsgirêka Kurd hemû derî têne girtin, guh ker dibin. Mixabin, bi vê ve girêdayî, li gel me Kurdan jî, heman helwesta Rêxistinên Navneteweyî û herwiha ya çapemeniya cîhanê weke nêzîkatiyekê pir asayî (normal) tê dîtin. Di vî derbarî de zêde nerihetî tine.

Piştî pîrozbahiyên Newrozê, ev demekê ye li bajar û navçeyên Bakurê Kurdistanê çalakiyên rûniştinê hene. Çendî ev çalakî bi pêşengiya BDP'ê hatine lidarxistin, ji hemû derdorên Kurdan piştgiriyê digire. Digel cur be cur daxûyaniyan û daxwazên ku têne ziman, mirov dikare armanca van çalakiyan di sê xalan de komî ser hev bike; « Azadî » « Demokrasî » û « Sîstemeke Xweser ». Ez bawer im, ti Kurdekî Bakur li dijî van daxwazan dernakeve.

Ez carnan ji hin kesan mesajan digirim, ji min re dibêjin "Çima Gelê Kurd jî weke yê Misir, Tunis û Lîbyayê ranabe ser xwe ?" Di bersivan de ez dibêjim "Gelê Kurd bi dehan salan e li ser piyan e, lê mixabin dengê wî zêde nayê bihîstin. Sedemê vê rastiyê jî ew e ku rewşa jeostratejîk û jeopolîtîk ya Kurdistanê naşibe ti welatekî din. Eger em tenê li Newroz a Amedê binêrin, bi tena serê xwe ew serhildaneke şoreşî ye."

Di dawiyê de ez dixwazim vê bêjim; çi dibe bila bibe, Gelê Kurd wê di sedsala 21. de rûpelekê nû di dîroka xwe de vebike. Ev rûpel ji Başûrê Kurdistanê dest pê kiriye, wê derbasî Bakur, Rojava û Rojhilat jî bibe.

# Şoreşgerekî rastî

## Ako Mihemed

Cewher Namiq Salim weke her tekoşerekî din girêdayî dîrok, helwest û dîtinên xwe ye, ji bilî vê yekê her pênaseyeke din dibe ku azareke giyanî be. Ez ê ku van peyvan dinivîsim, min gelek caran di civatên du kesî de ligel wî gotûbêjên dijwar û xav kirine, lê ne merce ku di wan civatên pir taybetî de her tişt hatibe ron kirin, ji ber ku kesên siyasetê dikin timî taktîk jî di fikra wan de heye. Li vê derê jî pêwîste ez şahidiya gelek kesan dubare bikim ku kek Cewher siyasiyekî pir zîrek bû.

Helbet şoreşger ji dîroka xwe qutnabin, bi taybet jî li cîhana Rojhilat, ji ber ku heta niha şoreşgerên Rojhilat nekarîne wiha bi hêsanî vê yekê bikin. Niha jî li Kurdistanê dema ku rexne li boriyê serok û berpirsên mezin ên opozîsyonê tê girtin, bersiva wî jî heye. Ew jî ne weke mikûrhatina li Rojava, lê bi rêzkirina xalên neyênî yên dîroka berambber. Lê ti ji wan boçûnên rexneyî yên Cewher Namiq li ser sîstema siyasî û rêveberiya Kurdistanê jî hêjayiya wî kêm nakin, ji ber ku di gotar û hevpeyvînên rojnamevanî de, wî timî behsa dahatûyê dikir. Rexne li sîstemê digirt, nekû li kes, armanca wî jî giştî bû, nekû kes û grûbek. Her ji ber vê yekê jî derbarê gelek lêkolîn û behsên amadekirî yên derbarê dîroka borî de digot: "Niha ne dema wê yekê ye bên belavkirin." Vêca ji ber boriya wî ya şoreşgerî û ya zanyarî ya niha, gelek kesan ew hêjayî opozîsyona rastî didîtin.

Kesê ku li ser nivîsandinên kek Cewher raweste, wê wan hûrî û têbiniyên hûr ên di nivîsên kek Cewher de heyîn de bibîne ku hêj fikrê opozîsyona hizbî negihaye wê astê. Dîtin û rexneyên kek Cewher ên ji bo desthilatê di hemû nivîsên wî yên vê dawiyê de pir eşkere ne, lê di nivîsandin û daxûyaniyê de xatirê opozîsyonê digirt, ji ber bi baweriya wî pêwîstî bi piştgiriyê heye, ji ber ji nû gihiştiye û ji nava bask, tevger û partiyên Kurdî ji dayîk bûye. Yek ji rexneyên wî yên herî mezin ên li ser meseleya navçeyên qûtbûyî bû û helwest berambberî çarenivîsa neteweya Kurd û dagirkeran bû.

Fikrê kek Cewher ê reformxwaziyê bê kîn û kîndarî bû. Ji ber vê yekê jî şoreşgeriya wî di vê qûnaxê de jî bê kêmasî bû, belkî hêzdan bû ji bo fikrê reforman, bi taybet ji ber ku ew kurê tevgera rizgarîxwaz a neteweyê bû û bi kiryar sinorên niştîmanî yên wê neteweyê ji Başûrê Kurdistanê dûrtir dîtibû. Kek Cewher mirovek serhişk bû, lê li ser heqiyê. Ew di heman demê de wefadar bû. Lewra sûda wê taybetmendiya wî ji zerera wê zêdetir bû. Ji bilî vê jî, serhişkiya li ser meseleyên neteweyî li gor min xweşikiyeke bê dawî dabûyê.

Wî (weke mînak) carekê behsa kongreya opozîsyona Îraqê ya li Londonê kir ku di dawiya sala 2002'an de hatibû sazkirin û ew serokê komîteya biryarên kongreyê bû. Wî amaje da ku belgename û biryarên wê bûn bingehê pêvajoya demkî ya piştî hilweşandina rejîma Seddam Hûseyîn a di Nîsana 2003'an de. Wî behsa wê yekê jî ji me re kir ka çawa wî daxwaza balyozê amerîkî yê karûbarên opozîsyona Îraqê Zelmay Xelîlzad derbarê rakirina Federalizma Herêma Kurdistanê ji biryarên kongreyê xistiye dawiyê. Herwiha wî behsa çûna xwe ya ji bo Tehranê kir, di dema gotûbêjkirina ligel YNK'ê û nermiya Îranê di dema şerê navxweyî de û helwesta wî ya li himber zimandirêjiya berpirsekî Îranê li Tehranê.

Wekî tekstên olî jî dibêjin, kamilî tenê ji bo xwedê ye. Lê Cewher Namiq bi dîrokek şoreşger a merdane, berdewama jiyana xwe ya şoreşgerî, helwestên wî yên li ser nûjenî û reforman, destpakî û exlaqê paqij, wekheviya di gotar û kiryarê de, heskirinek berfireh ji xwe re dirust kir. Dema ku min li gundê Berlût ala reş li ser xaniyê ku bi herî hatîn çêkirin didît, wê demê hêjatiya kesên wan gundan jî dihat bîrê ku di dema şerê çekdarî yê şoreşê de şahidî jêre dikirin. Dema ku mijara semînara wî ya di dema pêşmergetiyê dihat bîra min ku têde daxwaz ji pêşmergeyan dikir ku aboriyê di agir hilkirinê de jî bikin, min behskirina destpakiya kek Cewher ji gotara PDK'ê û opozîsyonê giringtir didît.

Ji bilî van hemûyan jî, em wekî Rûdaw jî nikarin kek Cewher ji bîr bikin, ji ber ku piraniya gotar û daxûyaniyên rojevê bi Rûdawê re parve dikirin. Her ew jî xwediyê fikra gelek rapor û qûncikên giring ên Rûdawê bû. Herwiha piştevanekî giring ê berdewamiya me bû. Ji bilî vê yekê jî hewl dida kesên baş bibe dostên me, lewra pêşniyar kir ku pisporekî Swêdî û Kurdê rûniştvanên Swêdê ji bo axaftina li ser xebata sivîl a ne dijwar vexwînîn. Ew meha çarem tê û kek Cewher jî li cîhanê nemaye. Lê ez gotina wî ya dawî ya dema sefera wî ya dawî li firokexaneyê ji bîr nakim; "Ako giyan, eger ez jî venegeriyam, bila çavê te li wan be."

Ez dizanim ku ez êdî wî di hundirê odeya mêvanan a mala wî ya li Pîrmam de nabînim, lê ez giyan û hestê wî yê neteweyî ji bîr nakim. Di rûniştina me ya herî dawî de ligel çend kesên Kerkûkî, li ber derî em bi rêkirin û got: "Jixwe em jî narûnin ku Kerkûka me ji me bibin û biçe ku derê, em ê her vegerînin."

# Risteya ser kêla gora Cewher Namiq



## Hêmin Ebdulla

Di çend heftiyên borî de ti bûyerekê qasî mirina Cewher Namiq Salim nekarî desthilatdaran û opozîsyonê li Kurdistanê bi hev re kom bike. Wî mirovî çi kiribû ku hemû alî li ser rêzgirtina kesayetiya wî û diltengbûna bi mirina wî ya pêşwext hevdeng bûn?

Di kitêba serpêhatiyên serokekî Ewrûpî de min risteyek xwend ku qet ji bîra min naçe: "Ji bo bersivdana wê pirsiyarê jiyam ku gava mirim, hêjayî çi risteyekê me da ku li ser kêla gora min bê nivîsandin?"

Gava Cewher Namiq pêşmerge bû, baş zanibû eger bimire li ser gora wî dinivîsin: "Mirovekî mezin bû, ji bo azadiya gelê xwe jiya û mir."

Wê çaxê hevalên wî yên eniya şer jî piştrast bûn ku heman hevok wê here ser kêla gora wan jî, lê sal hatin û sal çûn. Hinek ji wan şehîd bûn. Ew jî ligel hinekan ji wan ma û azadî bi çavê xwe dît.

Qonaxa piştî azadiyê ji bo van hevalên eniya şer tecrubeyeke tirsnak bû. Ji ber beşê wan ê herî zêde jibîra wan çûye ku gava mirin kîjan riste hêjaye li ser kêla gora wan bê nivîsandin. Gelek ji kesên ku doh netew diparastin û cilên wan ên xwêdangirtî û rihên wan ên nekurkirî maç dikir, wisa li wan hat gel ji wan bêzar bibe û dakeve ser cadeyan.

Lê, Cewher Namiq weke çawa di şikefteke dûrîdest a navçeya Behdînan de xewna azadî û dadperweriyê dît, bi heman awayî jî li mala xwe li Kurdistana azad heman xewn didît. Dixuya wî baş fam kiribe ku pir girîng e mirov jibîr neke: Kîjan hevok hêjayî wê yekê ye li ser gora wî bê nivîsandin?

Di sala 2000'an de, min Cewher Namiq dît. Wê demê serokê parlamentoya Kurdistanê bû û em weke şandeke çandî ya bajarê Soran çûbûn cem. Tê bîra min, me giliyên zêde ji nebûna xizmetguzarî û dadmendiya civakî kir. Wî jî guhdariya me dikir, gava me bidawî anî got: "Madem ewqasî bêzar in, çima nadakevin ser cadeyan? Çima hûn xwepêşandanan nakin?" Wê demê tenê çend sal di ser şerê malwêran ê birakujiyê de derbas bûbûn û hê jî gotinên serziman û binziman ên berpirsên hizbî dihatin bihîstin: "Ezmûna nimûneyî" ya Kurdistanê û "serkeftina" desthilata partiyên pêşverû bû, lê Cewher Namiq em hevwelatî dehif didan da ku ji bo reforman dakevin ser cadeyan!

Di çend salên borî de jî min şanazî dikir ku zêdeyî gotar û hevpeyvîneke rexnegir a Cewher Namiq di çapa Ewrûpa ya Rûdawê de biweşînim. Yek ji balkêştirîn gotarên wî jî ew bû ku bo pîrozbahiya derketina 5 endamên Kurd ên parlamentoya Swêdê û hevgirtina şiyana Kurdên derve, nivîsî bû. Ew ewqasî balkêş bû, ji ber ji dêlva gotinên biriqdar û çirûskdar, bi 5 pêşniyarên pratîk û sade ron kiribû ku çawa û çilo lobiya Kurd li Ewrûpa tê çêkirin.

Mirina Cewher Namiq dikare ji hevalên wî yên eniya şer re bibe zengilekî hişyarkirinê. Ewê ku ji bo azadiyê bi pakî jiya, milletê wî li ser dibêje: "Mêrxasek bû li pey xwe helwêst û nivîsên rexneyî hiştin." Lê eger hinek ji hevalên wî bimirin, di derbarê wan de bê gotin: "Di dema xwe de xebatkar bûn, lê li pey xwe koşk û şirket hiştin."

# Êşa Piştê

Êşa piştê nexweşiyek wisa ye ku di nav gel de pir belav bûye. Ji sedî 80'ê mirovan di jiyana xwe de qet nebe carekî rastê êşa piştê tên. Ev heftê carek an jî bi mehan dirêj dike. Êşa piştê him li ser jiyana mirov a kar û him jî ya civakî û malbatî bandorek neyînî dike. Ji ber rêbazên hereketkirina bêzanebûn vê êşê wisa mezin dibe ku pêdiviya ameliyatê derdikeve.


Dr. Nacî Mamedî*

**Sedemê êşa piştê çi ye?**

**Dr. Nacî Mamedî:** Ev hinekî bi temen ve jî girêdayî ye. Movikê piştê bi maskulkeya û goşt ve tên parastin; dema ku ev herdu bê hêz dibin hingê nikarin estiyê piştê biparêzin. Li vir ez dixwazim mînakek pir balkêş bidim: divê ku bê bîra gelek kesan, dema ku kon dihatin vedan di derdorê wê de gelek sitûn dihatin bicîhkirin. Ji ber wê jî em wan movikan jî û estiyê piştê jî dişibînin wan sitûnan. Ji ber ku bedena mirov hemû ji maskulkeyan û goşt çêdibe; pêwîstî bi xurt û qawîmkirina wan maskulkeyan û goşt heye.

Her kes di jiyana xwe de qet nebe carek rastê êşa piştê tê. Divê pişt rast bê girtin, lê mirovên me tenê rûdinên, ev yek her diçe piştê zeîf dike û qelewî çêdibe; qelewî ne tenê goşt e, hemû dohn e.



**Çareseriya êşa piştê bi çi şêweyê dibe?**

Dema ku êşa piştê çêdibe em bi xwe nikarin tiştek pir mezin bikin, hinek rêbazên wek spor, avjenî û jîmnastîk dikarin wan maskulkeyan xurt bikin. Bi gelek kesan re êşa piştê nayê xuyakirin, lê dema ku çêdibe jî ew mirov ji ber êşa piştê nikarin îdare bikin. Ev yek wextê ku dikeve nav rewşek kronîk hingê divê bi taybetî spor, avjenî û jîmnastîk bê kirin û nehêlin rê li ber wan êşên dijwar bên vekirin.

**Çi feyda mizdanê ji piştê re heye?**

Dema ku pişt pir dêşê hingê mizdan hinekî dibe alîkar, lê ne mayînde ye, herwiha dema êş destpê dike germ pêçandin jî dibe alîkar. Kesên ku dixwazin bi rastî baş fêrbibin û li gor wê tevbigerin divê pêşniyazên bijîşkan guhdar bikin.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Nacî Mamedî ji Rojhilatê Kurdistanê ye û li Almayayê dijî.*

# Kêmxewî sîstema laş xirab dike

Di lêkolînên herî nû de derdikeve holê ku razana pêwîst sedemek serekî ye ji bo sîstema bihêzkirina parastina laş. Berevajî wê kêm xewî sîstema parastina laş lawaz dike.

Di wê lêkolînê de tekez li ser wê yekê hatiye kirin ku kêmiya xewê sedemek serekî ye ji bo lewazbûna sîstema parastina laş û vîrus û mîkrob bi hêsanî bandorê li ser tendirustiya mirovan dirûst dikin. Di lêkolînê de zanyaran behsa wê yekê kirine ku pêwîste di şev û rojekê de mirov nêzî 6 saetan raze ji bo ku bikarin sîstema parastina laş bihêz bikin.

Herwiha li gor lêkolînê kêm xewî dibe sedem ku masûlke rastî birînan bên, tansiyon bilind bibe û rêjeya ensolîn di laş de bê hevsengî bimîne.

## Hefta pêş me çalakiyên Kurdan

**Kongreya Komela Bizîşkên Kurd li Almanya**

Kongreya salane ya Komela Pizîşkên Kurd li Almanya wê di 09.04.2011'an de li bajarê Hannoverê were lidarxistin. Em bangî hemû pizîşkên Kurd dikin ku tevlî kongreyê bibin.



Ligel rêz û hurmetên dostanî

***Dr. Dr. med. Rassoul Faki***
***Prof. Dr. med. Huseyin Bektaş***

**Dem:** 09.04.2011 li Hannover
**Navnîşan:** Restaurant am Leineschloss
(Am Niedersächsischen Landesparlament)
Hinrich-Wilhelm-Kopf-Platz 1
30159 Hannover

**Newroz li Konstanz/Almanya**

Bi beşdariya hunermend Kerîm Şexo

**Dem:** 02.04.2011
**Navnîşan:** Georg Elser-Platz 1
78467 Konstanz

**Telefon:** 0157-76513540

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Serokê Yekîtî Niştimanî Kurdistan (YNK) – Kesê yekem. 2- Hejmarek (berepaş) – Heywanek, lawirek – Beşek ji artêşa nav bajêr. 3- Şorba şîr û şekir (berepaş) – Cûreyek penîr, kesê ji Lotistanê – Li Swîsreyê çem û rûbarek. 4- Pesindana Mihemed pêxember – Bi zimanê Erebî destûr, rêdan – Navekî zilaman. 5- Du tîpên gotina "iqbal" – Notayek (berepaş) – Tirk ji Ereban re dibêjin. 6- Paşnavê serokekî Amerîkayê – Bi Erebî "heye". 7- Pronavê yekem – Kurtegotina "Unîtet Kîngdom" – Pê erd û ax tê kolan, "bêr"a piçûk. 8- Paye, wezîfe. 9- Dan û stendina di navbera du mejîyan de (berepaş). 10- Rengek – Edalet, mafdarî.

**Serejêr:** 1-Kevirê bi qul ku tê de dan tê kutan – Hesinê zirav û dirêj. 2- Rêxistina Ûsama Bîn Ladîn (berepaş) – Bê av, avê dixwaze. 3- Dilxweş, geş – Derfet, kês, mecal. 4- Maddeyek kîmyewî ku boyaxa nenûkan jê dibe – Mam, am. 5- Heb, tene, yek – Qiloç, strû. 6- Kesê ji "Torê" – Piçûkkirina "Elî" (berepaş). 7- Navekî zilaman – Ji xwarin û vexwarina ne xweş re tê gotin. 8- Bajar, medenî – Mal, sermaye. 9- Îcar, ji niha û pê ve (berepaş) – Navekî zilaman, serketin. 10- Tiştên zêde û erzan – Nîşana Elementa nîkel ê. 11- Elektrota pozîtîf. 12- Sê tîpên navê "nadir". 13- Dû tîpên alfabeyê. 14- Nêçîr, seyd. 15- Lîztikek ku bi 16 keviran tê lîztin (berepaş). 16- Jin, jina bedew û lihevhatî.



# Barzan û Sîdar xwe didin nasandin

Ez Sîdar im, birayê min jî Barzan e. Ez 8 salî û birayê min jî heft salî ye. Em xelkê devera Serhedê li Bakurê Kurdistanê ne. Bavê min Kurd e û diya min jî Azeriya Kurdistanê ye.
Em Kurd in lê li Almanyayê hatine dinê. Em zimanê almanî baş dizanîn, lê hindikî kurdî û tirkî diaxivin. Ez diçim polê 3'emîn û Barzan jî diçe polê 2'emîn. Ez dixwazim bibim parêzer, lê birayê min dixwaze bibe pizîşkê zarokan.

**Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu**

## FÊRÎ KURDÎ BIBE

**G g** گ

**Genim**  گەنم




# Çima em xwêdan didin?

Dema mirov germ dibe, an jî hereket dike, laşê mirov xwêdan dide. Çima? Tevî ku gelek caran bêhna xwêdanê bi me ne xweş jî tê, lê xwêdan ji bo laş gelekî girîng e. Dema di laş de maddên ziyandar kom dibin, an jî maddeyên jehrî çê dibin, laş bi rêya xwêdanê ji van maddeyan rizgar dibe. Girîngiyek din a xwêdanê ew e ku germahiya laş rêkûpêk dike. Germahiya laşê mirovek normal di navbera 36.5 - 37 pileyên germê de ye, lê dema germahiya laş ji vê zêdetir dibe, germahiya mirov bilind dibe û metirsî dest pê dike. Ew dem kûnên biçûk ên laşê mirov xwêdanê derdidin û bi rêya van jî germahiya laşê mirov derdikeve derve, pileya germa laşê mirov dadikeve û metirsî kêm dike.



# ZIRAFE



Zirafe li deverên tropîk û subtropîk, ku wekî navçeyên savan tên binavkirin, dijîn. Gul û pelên dara akasiya xwarina ku herî zêde zirafe jê hezdike ye. Lêvên zirafe nêzî 46 cm dirêj in û bi her alî de dikare bizivîne. Zirafe bi şev û roj tenê 2 demjimêran radize. Zirafeyên nêr herî zêde 25 salan dijîn û di 8 salî de dibin bav û di 5 salî de zirafeyên mê jî dibin dayîk. Zirafe 15 mehan ducanî dimîne.